

## Sevîm Dagdelen 11

“Divê Hikûmeta Alman biyaniyan tewanbar neke!”



## Aynur Dogan 8

“Wezareta Çandê alîkarî nade hunermendên Kurd”


# Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA

Xwînerên Rûdawê bêtir dizanin




تەنیا چوار کێڵگە ژمێردراوە

**یەدەگی نەوتی باشوور لە ٥٠ ملیارد بەرمیل تێدەپەڕێ**

5 ◀

Deutschland 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK     Hejmar / Nr. 66 | 12 Cotmeh / Oktober 2010 | www.rudaw.net | info@rudaw.eu

**Serokê Komîsyona Îlankirina Komara Laçîn, Wekîl Mistefa ji Rûdawê re piştrast kir:**

# Gorbaçov ’Komara Kurdistan’ dixwest

Wekîl Mistefayê ku piştî hilweşîna xeyala avakirina Komara Laçîn mecbûrî penaberiyê bû, ji Rûdawê re behsa sozên serokê Yekîtiya Sovyetê ji bo Kurdan û sedemên pêknehatina wan sozan kir. ▶7



## Serjimêriya li Kerkûk û Mûsilê ji paşxistinê jî tê paşxistin?

▶5

## Armanca tezkereya operasyonên derveyî sinor çi ye?

### BDP: Armanc Başûrê Kurdistanê ye

### HAK-PAR: Taktîk e, operasyon nabe







Di 17’ê Cotmehê de tezkereya ku rê dide Artêşa Tirk operasyonên dersînor pêk bîne bi dawî dibe û ji bo demdirêjkirinê, tezkere careke din kete rojeva Parlamena Tirk. Serokê Grûpa BDP’ê ya li Parlamenê, Bengî Yildiz, armanca dirêjkirina tezkereyê nirxand û got armanc ne PKK ye lê Başûrê Kurdistanê ye. “Ji ber Dewleta Tirk ji statuya Herêma Kurdistanê ne razî ye.” Serokê HAK-PAR’ê, Bayram Bozyel, jî daxuyand ku ev tezkere di parlamenê de wê bê dirêjkirin, lê ew bawer nake ku Arteşa Tirk operasyonên dersînor bike.

▶3

## Li Swêdê polîsekî Kurd Rûdaw rawestand



**Swêd (Rûdaw) -** Roja 10’ê Cotmeha 2010’an, dema ku hejmareke hevkarên Rûdawê ji bajarê Swêdê Uppsala berbi bajarê Borlange diçûn, ew ji aliyê polîsekî Swêdî ve hatin rawestandin. Hevkarên Rûdawê ku ji bo semînereke li Swêdê bûn, bi armanca nasîna lîstikvan û rêvebirên tîma fûtbolê ya Kurdan DalKurd diçûn Borlange. Wan herwiha dixwest di lîstikeke navbera wê tîma Kurdî-Swêdî û tîmeke din a Swêdê de amade bibin. Di dema lêkolîna polîs de, hevkarên Rûdawê bi kurdî axafîn û ji nişka ve polîsê Swêdî jî bi kurdiyeke rewan beşdarî danûstana wan bû û li sedema sefera wan pirsî. Bêguman polîsê Swêdî jî DalKurd nasdikir û li taximê ku wê vê hefteyê bihata hemberî DalKurdê pirsî. Bi gotina wî polîsê esil Kurd, sedema rawestandina wan ew bû ku hevkarên Rûdawê di otomobîlekê de bûn ku

jimareya plaka wê ne ya Swêdê, lê ya Almanyayê bû. Bi vê rawestanê ne tenê hevkarên Rûdawê kêfxweş bûn, lê polîsê esil Kurd jî: Polîs hem hejmara dawî ya Rûdawê “desteser kir“ û hem ji soz da ku bibe aboneyê Rûdawê.



## Makezagona nû dimîne piştî hilbijartinê



Cîhgirê Grûpa AKP’ê ya Parlamentoyê, Bekir Bozdag, ragihand ku partiya wan ji bo amadekariya makezagoneke nû dest bi kar kiriye û xwest ku partiyên din jî xwe amade bikin. Bozdag got ku ew bi alîkariya pispor û hiqûqnasan xebatên xwe yên bingehîn didomînin: “emê piştî hilbijartinê û bi beşdariya civakê ya hevbeş amade bikin.” ▶ 2

## Cîgirê Grûpa AKP'ê ya Parlamentoyê Bekir Bozdag:

# Em ê piştî hilbijartinê makezagona nû amade bikin

Guhertina makezagonê di qada siyasî ya Tirkiyê de bû alavekî propagandaya hilbijartinê. Rayedarên AKP dibêjin ku ew amadene piştê hilbijartinê makezagonê amade bikin, muxalefet jî dibêje niha.

**Firat Baran** Enqere

Cîgirê Grûpa AKP'ê ya Parlamentoyê, Bekir Bozdag, daxuyand ku jiber beriya referandûmê dem kurt bû û hîn pirsgirêkên teknîkî yên parlamenê hebûn wan xebatên li ser makezagona nû paşxistine piştê hilbijartinê. Bozdag got ku ew xebatên xwe didomînin û divê partiyên din jî vê yekê bikin û wiha pêde çû: "emê piştî hilbijartinê û bi beşdariya civakê ya hevbeş makezagoneke nû amade bikin."

Partiyên siyasî yên din jî jiber paşvexistina dema makezagona nû rexne li helwesta AKP'ê digrin û dibêjin ku AKP vê mijarê ji bo hilbijartinê dike wek alaveke berjewendiyê. Cîgirê Grûpa AKP'ê ya Parlamentoyê, Bekir Bozdag, di axaftina xwe ya ligel Rûdawê de rexneyên partiyên din jî bersivandin.

Bozdag da zanîn ku xebata li ser makezagoneke nû demeke dirêj digire û ji ber Yasaya Hilbijartinê û rêznameyên ku xebata parlamentoyê birêvedibin ew mecbûr mane amadekariya makezagona nû paşve bixin. Bozdag bibîr xist ku ji hibijartinê re 8 meh maye û ev dem ji bo amadekariya makezagoneke nû têr nake.

Nûnerê AKP'ê, Bekir Bozdag, daxuyand ku xebatên li ser makezagoneke nû li gor Rêznameya Parlamentoyê têne birêvebirin û axaftina xwe wiha domand: "li gor Rêznameya Navîn a Parlamentoyê tenê dengdana xalekî ya veşartî 45 deqeyan digire. Eger Parlamento bê navber, bi şev û bi roj jî bixebite û tenê dengdan bên kirin, ji bo dengdana 177 xalan 14 roj divê. Ji bilî vî karî, xebatên komîsyonan û rûniştinên giştî jî hene. Me 26 xalên guherandina paketê di 14 rojan de derbas kir, ka hûn bifikirin wê dengdana 177 xalan çiqas bajo."

Bozdag pêşniyaza partiyên muxalefetê ku dibêjin 'xebata partiyan a hevbeş tenê heftekî dajo' rexne kir û xebata komîsyonên hevkariyê yên berê bibîrxist û wiha axivî: "gelek zehmet e ku encamên erênî ji xebatên komîsyonan derkeve. Mînak, komîsyona ku di sala 1993'an de hatibû damezirandin ji bo 14 xalan 2 sal xebitîbû. Komîsyona ku di sala 1999'an de hat damezirandin jî heta sala 2001'an tenê li ser 31 xalan lihev kiribû."



Parlamenterê Yozgatê û Cîgirê Grûpa AKP'ê Bekir Bozdag

### "Em dixebitin, bila muxalefet jî bixebite"

Bozdag rexne û pêşniyazên partiyên muxalafetê dilsoz nabîne û rexneyên xwe wiha tîne ziman: "Ji bo guherandina 26 xalên paketê digotin ma di demeke kurt de makezagonê çawa diguherînin? Niha jî dibêjin di hefteyekî de em dikarin komîsyonan damezrînin û dest bi xebatê bikin. Ev nêzîkahî ne samîmî ne, ne jî rasyonel in, lê wek manevrayên siyasî ev yek bikartînin."

Cîgirê Grûpa AKP'ê ya Parlamentoyê, Bekir Bozdag, da zanîn ku wan di nava partiya xwe de komîsyoneke xebatê damezirandine û dest bi xebatê kirine û bang li muxalefetê kir û got, "Hûn jî dersa xwe bixebitin." Bozdax wiha dawî li axaftina xwe anî: "Me di nava partiya xwe de komîsyonê damezirand û dest bi xebatên pêşî kir. Hevalên me wê ji huqûqnasên makezagonê û ji pisporan alîkarî bistînin. Em li ser dersa xwe dixebitin, divê partiyên din jî bixebitin. Saziyên sivîl ên civakî jî divê xebatên xwe bikin. Werin em piştî hilbijartinê bi hevkariya giştî makezagoneke nû amade bikin."

# Rûdaw bû mêvana Kurdên Swêdê



Hevkarên Rojnameya Rûdawê li gel çendîn rojnamegerên Kurd

**Stockholm (Rûdaw) -** Roja 9'ê Cotmeh a 2010'an li paytexta Swêdê Stokholmê li ser mijara rojnamegeriya Kurd a li diyasporayê bi beşdariya rojnamevanên Kurd semînerek hat lidarxistin.

Di semînerê de rojnamevanên Kurd û hevkarên Rojnameya Rûdaw rewşa rojnamegeriya Kurd a li diasporayê nirxandin.

Li destpêkê Kawe Emîn mijara derxistina rojnameyên Kurdî li diasporayê nirxand û li ser sedemên berdewamnebûna wan rawestiya.

Paşî li ser navê Rûdaw Media GmbH, Hêmin Ebdulla, behsa projeya Rûdaw a çapa Ewrûpa kir. Piştî wî Rêvebirê Îdare û Bilavkirina Kompaniyeya Rudaw Media GmbH Mistefa Şefîq, derbarê xizmetkariyên ku Rûdaw pêşkêşî Kurdên derve dike, zanyarî da.

Gelek kes di wê bawerê de bûn ku Rûdaw kariye hevsengiya karkirin û profesyoneliya xwe biparêze û ji bo xwendevanên Kurd li derveyî welat bibe çavkaniyeke bawerpêkirî. Serokê Tîma Futbolê ya DalKurd, Ramazan Kizil, got ku ew her hefte Rûdawê dixwîne. Kizil di wê baweriyê de ye ku hemû dezgehên medyaya Kurd jî giringiyeke zêdetir bidin pirsgirêkên Kurdên diasporayê û bi taybet xortên kêrhatî.

Endamê Înstîtûta Kurdî li Kolnê Mîrhem Yigît jî Rûdaw weke "rojnameyeke profesyonel û giring" bi Kurdên Swêdê re da nasandin, lê rojnamevan Nesret Hacî gelek têbînî li ser Rûdawnet ê hebûn û got "Baştir e ku Rûdaw giringiyê bêtir bide zimanê înglîzî."

Mêvanekî din jî digot, "Hin kes bi guman li Rûdawê dinêrin." Lê dîtina hunermendekî navdarê Kurdistanî-Swêdî ew bû ku Rûdaw bi profila xwe ya netewî bûye rojnameya hemû parçeyên



**Rûdaw**
Rojnameyeke siyasî û heftane

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Serokê Civata Rêvebir**
Nûredîn Weysî
nuradinwaisi@rudaw.net

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Sîdar Bengîn Epozdemir
sidar@rudaw.nl

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Dipl. Kfm. Abdulletif Canimana
info@canimana.de

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

## “Asîmîlasyon sûcekî mirovatiyê ye“



*Serokwezîrê Tirkiyê ku ji bo temaşekirina lîstika fûtbolê ya di navbera Tirkiye û Almanyayê de hatibû Berlînê, roja şemiyê 9’ê Cotmeh a 2010’an ji aliyê Serokwezîra Almanyayê, Angela Merkel ve hat pêşwazîkirin. Di wê hevdîtinê de behsa întegrasyona Tirkan li Almanyayê jî hat kirin û Merkel bal kişand ser wê yekê ku mebesta wan ne asîmîlasyôn, lê întegrasiyona biyaniyan e. Erdogan jî gotinên xwe yên beriya du salan dubare kirin û got ku asîmîlasyon sûcekî mirovatiyê ye, lê bang li Tirkên li Almanyayê jî kir ku întegreyî civaka Alman bibin.*

# Sedemê dirêjkirina tezkerê êrîş e an taktîk e?

**Firat Kelehkî** Hewlêr

**Roja 17’ê Cotmehê di Parlamentoya Tirkiyê de dema ‘Tezkereya operasyonên derveyî sînor’ tê dirêjkirin. BDP dibêje armanc Başûre Kurdistanê ye, HAK-PAR jî bawer nake ku Dewleta Tirk operasyonê pêkbîne.**



Parlamenterê Êlîhê yê BDP’ê Bengî Yildiz



Serokê HAK-PAR Bayram Bozyel

Tezkereya ku rê dide Artêşa Tirk operasyonên dersînor pêk bîne û di 17’ê Cotmehê de dema wê diqede, ji bo dirêjkirinê li Meclîsa Tirkiyê ye. Tê çaverêkirin ku ji bo dirêjkirinê tezkereyê roja sêşemê di rûniştineke girtî de bê nîqaşkirin û derbas bibe. Bi baweriya Serokê Grûpa BDP’ê li Meclîsê Bengî Yildiz, armanca sereke ya tezkereya operasyonên dersînor ne PKK lê Başûrê Kurdistanê ye. Serokê HAK-PAR’ê, Bayram Bozyel, jî dibêje ti metirsiya vê tezkereyê tune û bi baweriya wî ev taktîkeke û operasyonên dersînor ji vê saetê û şûnde ne mumkîn in.

Di demekê de ku çareseriya pirspirêka Kurd tê nîqaşkirin û di vî warî de hinek danûstandin hene, tezkeraya hikûmeta AKP’ê ku rê dide Artêşa Tirk li Herêma Kurdistanê operasyonan pêk bîne, ji bo cara 3’mîn di rojeva Meclîsa Tirkiyê de ye. Tezkereya ku dema wê di 17’ê Cotmehê de bi dawî dibe û dixwazin saleke din dirêj bikin, roja sêşemê dikeve dengdanê. Di tezkereyê de PKK weke tehdîtekê li ser "aramî û ewlehiya gelê Tirk, yekîtiya netewî û perçekirina welat" tê dîtin û herwiha tê îdîakirin ku Tirkiye giringiyê dide yekîti û aramiya dewleta Îraqê jî.

### “Dewleta Tirk ji statuya Başûrê Kurdistanê nerazî ye”

Partiyên Kurdan vê yekê weke pêngaveke negatîf dibînin û dibêjin; ger operasyoneke wiha bê kirin wê hemû hewldanên çareseriya pirsgirêka Kurd têk biçin û ji bo AKP’ê jî ne tiştekî baş e. Di vê derbarê de Serokê Koma BDP’ê li Meclîsê Bengî Yildiz, daxuyaniyek da Rûdawê û got: ''Nêzîkatiya dewletê li hemberî Kurdan neguherî ye, armanca dirêjkirina tezkereyê ne tenê PKK, lê hemû Kurd in, bi taybetî li hemberî Başûrê Kurdistanê tê derxistin. Dewlet ji statuya Başûrê Kurdistanê nerazî ye û vê tezkereyê jî weke kartekê di destê xwe de dihêle ji bo ku bikaribe her dem êrîşî Başûr bike..''

Wezîrê Dewletê û Cîgirê Serokwezîr Çemîl Çîçek, dema tezkere bir rojeva Meclîsê ragihand ku ew di xebata dijî terorê de bibiryar in û wiha axivî bû: “Armanca me ew e teror ji rojevê derkeve. Ji bo vêna jî hinek tedbîr hatine wergirtin, divê ev berdewam bikin. Di ser van hemûyan re ew tezkere heye ku rê dide leşker li derveyî sînor operasyonan bikin û di 17’ê Cotmehê de dema wê diqede, lewra Meclîsê ev berpirsyarî daye me û daxwaza me ew e tezkere saleke din bê dirêjkirin.”

### “Taktîk e, ger bê dirêjkirin jî nayê bikaranîn”

Serokê HAK-PAR’ê Bayram Bozyel, herçiqas wek pêngaveke negatîf dibîne, lê bi baweriya wî ev taktîkek e û eger tezkere bê dirêjkirin jî nakeve pratîkê. Bozyel ji bo Rûdawê mijar wiha nirxand: ''Bi nerîna min şert û mercên Tirkiye bikaribe midaxeleya Başûrê Kurdistan û Îraqê bike tune, êdî ne Herêma Kurdistan, ne hikûmeta navendî ya Îraqê û ne jî hêzên Amerîka destûrê nadin karekî wiha. Midaxeleyeke wiha wê hewldanên ji bo çarseriyê tên kirin jî têk bide. Hikûmet dixwaze peyamekê bide wan hêzên şoven ên nav Tirkiyê, qaşo di mijara jinavbirina ‘terorê’ de pêdagirin, yanî wiha pêşan bide, ez bawer nakim vêna ji bo bikaranînê derbas bikin, ji bo tansiyona raya giştî ya Tirkiyê û hêzên nav parlamen daxin, derbas dikin..''

Helwesta CHP’ê di vê mijarê de ne zêde diyar e, ji aliyekî ve dixwazin operasyonên dersînor bên kirin û li aliyê din jî naxwazin bi tevahî dengên Kurdan winda bikin ji ber hilbijartin nêzîk dibin. Li gor MHP’ê jî qet nabe diyalog ligel Herêma Kurdistanê û ti aliyên Kurd bê kirin û bi çi awayekî be divê statuya Başûrê Kurdistanê bê têkdan, hinceta wan jî ew e ku rayedarên Kurdistanê PKK’ê dihewînin. Hinek parlamenterên AKP’ê yên Kurd jî di programên televizyonî de didin diyarkirin ku ew li dijî operasyonên siyasî û leşkerî ne û dixwazin hemû pirs bi taybetî jî pirsa Kurd bi diyalog û danûstanê bên çareserkirin.

### “Hikûmeta AKP’ê du dil û ne zelal e”

Li gor Serokê HAK-PAR’ê Bayram Bozyel, di demeke wiha de pêngavên bi vî rengî bê bernameyiya hikûmeta AKP’ê pêşan dide û wiha dirêjî bi axaftina xwe dide: ''Wek tê zanîn danûstanên wan bi Başûrê Kurdistanê re baş in, hatûçûnên fermî hene, konsolxane tên vekirin, li aliyê din jî tiştên wiha dikin. Ev helwest di heman demê de bêbiryarî û dudiliya AKP’ê pêşan dide, AKP di gelek meselan de du dil e, ne zelal e, ji bo dahatûyê wê çi bike ne diyar e, ew jî dixwaze rêyekê ji xwe re bibîne, lewra du gavan pêş ve diavêje û yekê bipaş ve, dixwaze hem di pirsa Kurd de hinek pêngavan bavêje û hem jî raya giştî ya Tirkiyê heta astekî razî bike.''

Li ser pirsa, ‘gelo îhtimal heye ku Tirkiye û Hikûmeta Herêma Kurdistanê derbarê operasyoneke dersînor de lihev kiribin?’ Yildiz wiha bersiv dide: “Em bawer nakin. Di hevdîtinên ligel Mam Celal û Rêzdar Barzanî de, em li ser van mijaran axivîn, ew jî dixwazin pirs bi rêbazên demokratîk û aştiyane bê çarserkirin, ew bi xwe ji van êrîşên ser sînor ên dijî PKK’ê nerazîbûn, lê dixwestin PKK agirbestê rabighîne, PKK’ê jî agirbest ragihand, ji niha û şûnde bawer nakim Kurdên Başûr bi dewleta Tirkiyê re rêkevin û operasyonê bikin, nêzîkatiyeke wiha ji bo dahatû û statuya Başûrê Kurdistanê jî nebaş e.”

Bozyel jî bawer nake Herêma Kurdistan û Tirkiye li ser tiştekî wiha lihevhatibin û axaftina xwe wiha qedand: “Bawer nakim Herêma Kurdistanê di nav tevgereke wiha de be, yan jî bi dilê wan be, lê em dizanin ew jî nikarin li dijî hemû tiştekî derkevin. Parlamena Tirkiyê ye ku biryareke wiha dide. Divê mirov li bendê be ka çi dibe.”

### Tezkereya 2007’an rê li operasyoneke mezin vekir

Di tezkereya operasyonê dersînor de wiha tê gotin: "Tirkiye ji bo PKK’ê ji Bakurê Îraqê derxe û dawiyê li êrîşan bîne, tevgerên leşkerî didomîn e. Tirkiye li gor hiquqa navnetewî tedbîrên sînor werdigre. Ji bo ku midaxele û operasyonên dersînor pêk bînin, tezkere di 17’ê Cotmeh a 2007’an de hat derxistin û bi biryara hikûmetê herî dawî 6’ê Cotmeh a 2009’an salekê hat dirêjkirin. Ji bo saleke din bê dirêjkirin ji aliyê Civata Wezîran ve biryar hat wergirtin."

Di dengdana 17’ê Cotmeh a 2007’an de koma DTP û Parlementerê CHP’ê, Eşref Erdem dijî tezkereyê deng dabûn. AKP, CHP û MHP’ê piştgirî dabûn tezkereyê û 21’ê Sibat a 2008’an operasyon dijî navçeya Zapê ya Herêma Kurdistanê hatibû dest pêkirin. Di operasyonê de gelek leşker û gerîlayên PKK’ê hatibûn kuştin. Operasyon piştî 8 rojan bi dawî bûbû. Ji 6’î Cotmeh a 2009’an de ku tezkere salekê hat dirêjkirin, bi sedan êrîşên hewayî ji bo ser deverên cuda yên Herêma Kurdistanê hatin pêkanîn.

**Bayram Ayaz**

## Yekrêziya tevgera bakur, serkeftin û têkçûn



Di dîrokê de gorînên serdemî hene, ku wan bandora xwe li ser hemû welatan û jiyana xelkan hêlaye. Nexşeya beşerî, siyasî, aborî-bazirganî li gor encamên van bûyeran şekil girtiye û digre.

Şoreşa Fransayê (1789) mirovatî derbasî çaxê kapitalizmê û avakirina civak û dewletên netewî kir. Şerê Cîhanî yê Yekemîn bi temamî dawî li Împaratorî, Çarîtî, Kayserî û Hikûmdariyên kraliyetan anî.

Şerê cîhanî yê duyemîn şerê bidestxistina serkêşiya cîhana kapîtalîst bû. Di dawiya vî şerî de li Ewrûpayê faşizma Hitler-Musolînî-Franko û li rojhilatê Asyayê tenno-faşizma japonî têkçû. Hevbendiya Sovyetê û Anglo-Saksonan biserket. Cîhaneke du-blokî avabû û pê re jî “şerê sar” destpê kir. Sala 1989‘an bi rûxandina diwarê Berlînê û bi belavbûna Yekîtiya Sovyetan ev çax jî bi dawî hat.

Ev bîst sal in cîhan di bin bandora van encaman de bi berdewamî di nav proseseke gorînê de ye. Li Rojhilatê Ewrûpa û Asyanavîn nexşeya siyasî guherî, dewletên nû hatin avakirin, sînor ji nû ve hatin danîn. Li Rojhilata Navîn ev yek neqewimî. Heta niha çi dibe di nav sînorên dewletên heyî de diqewime. Bûyerên dîrokî yên ber bi çav avakirina Îdareya Herêma Kurdistanê li Îraqê û Otonomiya Filistînê li Îsrailê ye. Damezirandina dewleteke Filistînî tê axaftin û dewletên Ereb, Îran û Tirkiye vê yekê diparêzin, lê ji bo Kurdistanê nebe dewleteke xweser hemû bi hevre aşkere yan veşartî li dijî derdikevin. Eger ji destê wan bê, gelek pê xweş in ku ev Îdareya Kurdistanê jî nemîne, xelkê Kurd li ti parçe û devereke welatê xwe, qet mafekî bidest neyne.

Belê, bûyerên serdemî bi taybetî bandoreke zêde li ser rewşa me Kurdan dihêle. Di çaxên gorînan de eger em Kurd bixwe jî ne lihev bin û hevbendî û yekrêziyeke me ya rêkûpêk û xurt nebe, em hertim yên xesirî ne.

Awirekî bidin dîrokê, hertim wisa bûye. An me yekîtî nebûye em têkçûne, an jî em bûne qurbaniyên planên navnetewî û herêmî. Tevgera 1925, 1930, 1937‘an ên Bakurê Kurdistanê ji kêmhazirî û netifaqiya navxweyî û planbaziyên herêmî û navnetewî têkçûn. Komara Kurdistanê (1946) û Şoreşa Barzanî (1975), herdu jî bûn qurbana planên herêmî û navnetewî.

Niha bazarek û hatûçûyekî li ser tevgera Bakurê Kurdistanê heye. Dewleta Tirk di nav hewldanê de ye, çawa bi PKK/BDP‘ê re serî derkeve, wan bixe bin kontrola xwe. Herwisa di nav lêgerîn û plangêriyekî de ye, çawa tevahiya tevgera Bakurê Kurdistanê ji hevdu bixe û pêşiyê li daxwazên gelê Kurd bigre. Ji işaretên ku heta niha derketine holê, nexuyaye ku dewleta Tirk bi siyaseteke hevçaxî li çareseriyekî maqûl û adil digere. Dibe ku çendek ji siyasetvanan xwedî niyeteke paqij bin, lê bi tevayî dewleta Tirk dixwaze vê pêvejoyê bi xapandinê derbas bike.

Çare çî ye? Hevbendî, yekrêzî, gotara hevbeş, nûnertiya hevbeş… Têkçûn an serkeftin bi vê ve girêdayî ye.

“Ger hebûya me îttîfaqek, Vêkra bikira me înqiyadek” (E. Xanî) Gotina zêde ne hewce ye. Emê vê mijarê hê binivîsin.

# Li Sine rewşa awarte her didome

**Sine (Rûdaw) -** Piştî êrişa çekdarî ya li Sine ya li dijî pasdarên Îranê pêk hat û tê de 5 pasdar mirin, hêzên Îranê li bajêr rewşa awarte destpêkirin.

Li gorî malpera Kurdistanmedia, ev rewşa awarte roja şemiyê destpêkir hîn didome û li Qada Îqbal û şeqama Behmen (Dr. Qasimlo) gelek tîmên taybet bi cih bûne. Herwiha gelek endamên hêzên ewlekariyê bi cilên sivîlan digerin.

Roja 7’ê Cotmehê, du kesên nenas li meydana Îqbal a bajarê Sine, gule li wesayîtek a hêzên ewlekariyê reşandine, di encam de 4 pasdarên Îranê hatin kuştin û kesek sivîl jî jiyana xwe ji dest dabû.

Şandeke Kurdên bênasname daxwaznameyek da Serokayetiya Civata Wezîrên Sûriyê

# Pirsgirêka Kurdên bênasname berdewam e

**Dewlet û desthilatdar soza çareserkirina pisrgirêka bi sedhezaran Kurdên bênasname yên Sûriyê didin, lê cîbicî nakin û hêjî bêtir mafên wan binpê dikin.**



Kurdên Rojava bi çalakiyan encamên serjimêriya awarte red dikin

**Besam Mistefa**

Roja 5’î Cotmeh a 2010’an şandeke Kurdên bênasname berbi paytexta Sûriyê, Şamê birêket û daxwaznameyek da Civata Wezîran. Hêzên ewlekariyê 6 endamên şandê binçavkirin û piştî 15 demijêran ew azad kirin. Herwiha hêzên ewlekariyê yên li pêşiya avahiya Civata Wezîran daxwazname ji destê şanda Kurd girt û nav û navnîşanên wan û jimareyên telefonên wan qeydkirin û ji wan re gotin ku Serokwezîr Nacî Al-Îtrî di civînê de ye, lê eger dema wî çê bibe ewê ligel şandê bicive.

Îsal, 48 sal bi ser serjimêriya awarte ya ku di 5’î Cotmeh a 1962’an de li Parêzgeha Hesekê hat kirin, derbas dibin ku di encama wê de zêdeyî 120 hezar Kurdan ji nasnameya Sûriyê hatin bêbeşkirin û wek ‘biyanî’ hatin jimartin, lê niha hejmara wan zêde bûye û nêzîkî 300 hezaran hene.

Sekreterê Partiya Demokrat a Kurd li Sûriyê, Nasredîn Brahîm, ji bo Rûdawê got: "Meclîsa Siyasî ya Kurd li Sûriyê şandeke Kurdên bênasname şand Şamê da ku daxwaznameya xwe bidin Serokayetiya Civata Wezîran. Herwiha me rêxistinên xwe yên li Ewrûpa û derve jî agahdar kirine ku çalakiyên xwe di vî warî de zêde bikin."

### Serkomar û hikûmetê jî soza çareseriyê dane

Şanda Kurdên bênasname di daxwaznameya xwe de diêbjin: "ev 48 salin em bi rewş û pirsgirêkên aborî û civakî rûbirû dibin, em nikarin girêbestên jinanînê bi navê xwe mohr bikin, herwiha mal, xanî, zevî û hebûnên din ên me ne li ser navên me ne. Em nikarin xwendina xwe berdewam bikin û li dezgehên dewletê nayên damezrandin."

Helbet Hikûmeta Sûriyê û Serokkomar, Beşar Esad, gelek caran soz dane ku pirsgirêka van kesan çareser bikin. Nasredîn Brahîm diyar kir ku Hikûmeta Sûriyê zêdeyî carekê soz daye vê pirsgirêkê bidawî bîne: "di kongrê dawî yê Partiya Baas a desthilatdar de, biryar hat standin ku ev pirs bê çareserkirin. Herwiha di 2003’an de Serokê Civata Wezîran li Hesekê ligel hinek Kurdên bênasname civiya û soza çareserkirinê da. Di 2006’an de jî soz û hevdîtin li Şamê çê bûn." Navborî herwiha got: "Serokê Sûriyê, Beşar Esad, piştî serhildan a 2004’an li Qamişlo û seranserî bajar û bajarokên Rojavayê Kurdistanê, got ‘Kurd beşeke sereke ya pêkhata civaka Sûriyê ne’ û soz da ku pirsa ‘Biyaniyan’ çareser bike, lê nekir û nayê zanîn wê dahatûya vê meseleyê çawa be."

Li gor hin çavdêran; tevgera siyasî ya Kurd li Sûriyê ji bilî derxistina daxuyaniyên şermezarkirinê, heta niha nekariye tiştekî ji pirsa Kurdên bênasname re bike. Sekreterê Partiya Demokrata Kurd li Sûriyê ku partiya wî endama Meclîsa Siyasî ya Kurd e li Sûriyê, vêya red dike û dibêje tiştê ji me tê em dikin.

Kurdên bênasname ku bi hinceta bi dizî ji Tirkiyê derbasî Sûriyê bûne û ne xelkê vî welatî ne, di warê jiyana rojane de rastî gelek pirsgirêkên civakî, aborî, mirovî û hwd. tên. Herwiha li Sûriyê Kurdên bênasname xizmeta leşkerî ji bo Sûriyê nakin ji ber Hikûmeta Sûriyê wan wek ‘neyar, biyanî û ne cihê baweriyê’ dibîne.

Berpirsê Dezgeha Mafên Mirovan li Sûriyê (MAF), Brahîm Yûsiv, ji bo Rûdawê eşkere kir ku pirsgirêkên Kurdên bênasname pir zêde ne û got: "nikarin herin derve ji ber bê nasname ne û pasport ji wan dernakevin. Li Sûriyê jî ger ji bajarekî çûn bajarekî din nikarin li otelekê razin. Berî demekê jî hikûmeta Sûriyê biryareke nû derxist ku nabe xwediyên restaurant û cihên tûrîstî (ku hejmareke zêde ya Kurdan lê kar dikin) kesên bê nasname li cem xwe bidin xebitandin." Yûsiv da zanîn ku Beşar Esad rast nabêje: "tiştê ku li Sûriyê dibe dijî yasa û destûra Sûriyê bi xwe ye. Herwiha dijî qanûnên navnetewî û mafên mirovan e."

### Kar û çalakiyên Kurdên Sûriyê li derve

Kurdên Sûriyê yên li derveyî welat gelek çalakiyan lidardixin. Hêzên Kurdî yên li Belçîka roja 8’î Cotmeh a 2010’an li pêşiya Balyozxaneya Sûriyê li Brûkselê xwepêşandan sazkirin, herwiha li paytexta Awisturya Vienna jî heman çalakî hatin li darxistin û li Siwêsra jî Partiya Yekîtî ya Demokrat a Kurd li Sûriyê roja 5’î Cotmeh a 2010’an xwepêşandanek sazkir û nameyek da Beşa Siyaseta Derve ya Parlamentoya Swîsra û daxuyaniyek li paytexta Swîsra Bêrnê belav kir û daxwaz ji raya giştî ya cîhanê dike ku encamên serjimêriya awarte ya sala 1962’an ji holê rakin û nasnameyê li Kurdan vegerînin.

Mafnas Brahîm Yûsiv dibîne ku guşarên civaka navnetewî bandorê li hikûmeta Sûriyê dikin: "dema têkiliyên hikûmetê ligel derve û hêzên mezin baş bin, dewlet destê xwe li dijî hundir tund dike, loma bi rêya çalakiyên li derve nerîna dewletan li ser Sûriyê diguhere û guşaran dixin ser hikûmetê." Yûsiv wiha dawî li xaftina xwe anî: "pirsa Kurdên bênasname wek nexweşiyeke metirsîdar e, her ku diçe mezint û zêde dibe, loma pêdivî bi çareseriyeke zû heye. Mixabin tevî hemû sozan jî ev pirsgirêk hê nehatiye çareserkirin."



Rêvebirê Serjimêriyê yê Hewlêrê:

# Ez bawer nakim ku di 5'ê Kanûnê de serjimêrî bê kirin

Serjimêriya giştî ya Îraqê ku diviyabû di 24'ê Cotmehê de bihata kirin, li ser daxwaza Ereban dîsa hat paşxistin.

**Hewlêr (Rûdaw) –** Biryar bû ku di 24'ê Cotmehê de di dîroka Îraqê de serjimêriya dehan bihata kirin, lê bi hinceta ku Parêzgeha Mûsilê xwe ji bo serjimêriyê amade nekiriye û parêzgar rê nedaye, bo 5'ê Kanûn a 2010'an hat paşxistin. Ereb û Tirkem dixwazin ku di forma serjimêriyê de pirsa, "Netewa te çî ye?" bê derxistin. Rêveberê Serjimêriyê yê Hewlêrê Husên Kakil dibêje ku baweriya wî nîne di 5'ê Kanûnê de jî serjimêrî bê kirin.

Rêvebirê Serjimêriyê yê Hewlêrê, Hisên Kakil, ku hefteya borî tevî civîna rêvebirên serjimêriyê yên parêzgehan bû li Bexda, got: "Ji me re diyar bû hinceta berpirsên îdareya Mûsilê ne teknîkî, lê siyasî ye."

### Serjimêriya 1. di 1927'an de ya dawî di 1997'an de

Rêvebiriya Serjimêriyê ya Hewlêrê ji bo prosesa serjimêriyê heta niha 18 hezar jimêryar perwerde kirine û Husên Kakil diyar kir wan hemû amadekarî kirine: "Herwiha ji sedî 10 jimêriyarên zêde ji bo bûyerên jinişkave hatine amadekirin. Tenê reklam mabûn ku biryar bû di 10'ê Cotmehê de destpê bike, lê ji ber paşxistina serjimêriyê, reklam hat paşxistin."

Yekem prosesa serjimêriyê li Îraqê di 17'ê Cotmeh a 1927'an de hat kirin, ku wê demê jimara rûniştvanên Îraqê 2 milyon û 968 hezar kes bû. Pişt re 8 serjimêriyên din hatin kirin ku ya dawî serjimêriya 1997'an bû, ku Herêma Kurdistanê lixwe negirt. Li gor vê serjimêriyê, hejmara rûniştvanên Îraqê tevî Herêma Kurdistanê 22 milyon kes bû. Diviya bû serjimêriya din di 2007'an de bihata kirin, lê nehat kirin, ji bilî wê ev 30 sal in ji ber nerazîbûna Ereb û Bereya Turkmenî li Kerkûk û Mûsilê, serjimêrî tê paşxistin.

### Li ser daxwaza Tirkmen û Ereban hat paşxistin

Bi baweriya Hisên Kakil astenga li pêşiya prosesa serjimêriyê hebûna pirsa `neteweya te çî ye` di foruma serjimêriyê de ye, ku herdem hebû. Niha Ereb û Turkmenên Kerkûkê daxwaz dikin ev pirs ji formê bê rakirin, lê Hisên Kakil rakirina vê pirsê `mehal` dibîne û dibêje: "Ger ev pirs bê rakirin pir zehmet e Kurd beşdar bibin, her çiqasî wê demê biryar di destê siyasiyan de ye, dû re di tevahiya serjimêriyên berê de ku hatin kirin, pirsa diyarkirina netewê di forman de hebû."

Roja 6'ê Cotmehê Serokê Desteya Navendî ya Serjimêriya Îraqê Mehdî Elaq di civînekê di ligel rêveberên serjimêriyê yên parêzgehên Îraq û Herêma Kurdistanê ragihand ku li ser daxwaza îdareya Mûsilê û Ereb û Turkmenên Kerkûkê prosesa serjimêriyê hat paşxistin heta 5'ê Kanûnê. Her çiqasî Elaq, berê ji bo Rûdawê gotibû: "Daxwazkariyên Turkmen û Erebên Kerkûkê bo rawestandina serjimêriyê li Kerkûkê tu bandorê li ser prosesa serjimêriyê nake û nayê rawestandin û ti hincetek bo ragirtina prosesê li holê nîne."

Kakil ti sedemekî teknîkî li pişt paşxistina serjimêriyê nabîne û dibêje: "Sedemê paşxistinê siyasî ye. Di civîna me ya dawî de li Bexda, rêveberê serjimêriyê li Mûsilê rapora xwe xwend û ragihand ku amadekariyên xwe bo serjimêriyê nekirine, bi hinceta ku pêşmerge li Mûsilê ne û kontrola tevahî li ser qeza û nahiyayên ku pêşmerge li wan e nayê kirin." Di heman civînê de, rêveberê serjimêriyê yê Mûsilê eşkere kir ku parêzgerê Mûsilê Esîl Nucêfî nivîsarek daye rêveberê giştî yê perwerdeya Mûsilê, ku ji bo holên fêrkirinê yên serjimêriyê ti mamosteyan neşînin.

Her çiqasî serjimêrî bo 5'ê Kanûn a 2010'an hat paşxistin jî, Kakil bawer nake wê rojê jî serjimêrî bê kirin: "Ereb û Turkmen daxwaz dikin pirsa netewê ji formê bê avêtin, Kurdên ku piştî 2003'an vegeriyane parêzgeha Kerkûkê bên derxistin. Ew jî pêdagir in li ser van herdû daxwazên xwe, loma dijwar e serjimêrî bê kirin. Ereb û Turkmenên Kerkûkê dibêjinn divê ji her malekê re sê jimêriyar bên danîn, ger wiha be pêdiviya Kerkûkê bi 35 hezar karmendên serjimêriyê dibe, ev pir zehmet e. Ji ber serjimêrî bi mamosteyan tê kirin û jimara wan li perwerdeya Kerkûk 18 hezar mamoste ye."

### Pirsa "Netewa te çî ye?" bû pirsgirêk

Mînaka testa forma serjimêriyê gihaye serjimêriya bajaran, ku nêzîkî 25 pirsan tê de hene, ku du pirsiyar bi cihê niştecihbûna niha û berê ve girêdayî ne. Herwiha sedemê guherandina cihê niştecihbûnê tê de heye û 9 sedem di vê xanê de hatine danîn.

Hisên Kakil ronî kir ku her mirovek zêdeyî 6 mehan li bajarekî mabe, li ser wî bajarî tê jimartin, lê di formê de amaje bi wê yekê tê kirin ku ji ku û ji ber çi hatiye. Navborî derbarê Erebên ku koçberî Hewlêr û bajarên din ên Herêma Kurdistanê bûne wiha axivî: "Tenê ew kes li ser Hewlêrê yan parêzgehên din ên Îraqê tên jimartin, ku ji mêj ve li vir niştecih in û nasnameya wan hatibe guherandin, yan kesek xwe wek Ereb tomar bike, ji ber her kesê temenê wî zêdeyî 18 salan be, azad e xwe li ser kîjan netewê tomar bike, lê yên ku temenê wan di binî 18 salan be, li ser neteweya dayik û bavên xwe tên tomarkirin."

Derbarê koçberên Kerkûkê yên ku li Herêma Kurdistanê dijîn û nevegeriyane Kerkûkê, Kakil dibêje: "Kerkûkiyên li Herêma Kurdistanê dijîn, di serjimêriyê de li ser bajarên Herêma Kurdistanê tên jimartin, ji ber ti hinceta wan nîne ku nevegerin bajarê xwe û niha Kurd li Kerkûkê hukim dikin. Kerkûkî bi nevegera xwe bo Kerkûkê di roja serjimêriyê de zererê didin xwe û Kurdan bi giştî."

Derheqê Kurdên ku ji parêzgeha Mûsilê reviyan û hatine Herêma Kurdistanê, navbirî diyar kir: "Li ser Mûsilê tên jimartin, ji ber piraniya wan bi zorê hatine derxistin û ji ber xerabiya rewşa ewlekariyê bajar bicî hiştine."

---

**Ahmet Dere**

## Pêwîstiyeke Netewî

Pêkanîna Konferanseke Netewî ji rojeva Kurdan dernakeve. Çendî ev mijar tenê ji aliyê derdorên PKK'ê ve di rojevê de tê girtin, ew bûye pêwîstiyeke netewî jî.

Birîna gelê Kurd a herî kûr pêkneanîna Yekîtiya Netewî ye. Ev birîn hê jî germ e, xwîn jê diherike. Ji bo saxkirina vê birînê, di nava hemû rêxistin û hêzên Kurdan de daxwazek heye, lê mixabin digel ku ji salan vir ve ev daxwaz tê ziman, hê jî ti gavên berbiçav nehatine avêtin. Ez bixwe hemû rêxistin û hêzên Kurdan di vê derbarê de berpirsyar dibînim, tewanbar dikim, guneh di stûyê hemuyan de ye.

Kêmasiya Kurdan a herî mezin ew e ku; her rêxistin xwe di navenda mijaran de dibîne, dixwaze her gav li gorî berjewendiyên wê bin. Dema ku mirov li dîroka gelê me dinêre, mixabin tê dîtin ku dijmin jî tim li ser vê xala qels a Kurdan leystine. Di bingeha şerên birakujî de tim ev qelsî hebû ye.

Ji bo Yekîtiya Netewî ya Kurdan, pêkanîna Konferanseke Netewî xwediyê pêwîstiyeke giring e. Bêyî ku platformek çê bibe, niqaş werin kirin û guftûgo bêne kirin, kes nikare behsa Yekîtiyê bike. Lewre Konferanseke ku têde hemû rêxistinên Kurdan hebin û di encama wê de li ser xalên sereke nêrînek derkeve, bûye Karekî Netewî. Her rêxistina Kurd ku xwe ji vî karî dûr bigire, layiqê şermezarkirinê ye.

Dema ku ez li 20 salên dawî dinêrim, bi taybetî di derbarê Yekîtiya Netewî de, di nêzîkatiya hemû rêxistin, hêz û herwiha saziyên Kurdan de kêmasî hene. Saziya ku xwediyê hêzeke pir qels jî, dema ku mijar dibe Yekîtiya Netewî, ew xwe di navendê de dibîne û dixwaze heman kar li dora wî bê tevger kirin. Ev nêzîkatî bûye weke nexweşiyekê di nava me "hemûyan" de dijî. Lewma digel ku hejmara me ji 35 mîlyonî derbastir e, hê jî em nebûne xwediyê nasnameyeke fermî û li welatên cuda penaber in.

Ji salên 1990'î vir ve daxwaza ji bo Konferansekê Netewî û pêkanîna Yekîtiyeke Netewî herî zêde ji aliyê PKK'ê û derdorên wê ve hatiye ziman. Niha jî heman mijar bi awayekî zindî di rojeva wê de ye, lê mixabin heya niha ti encamek jê nehatiye girtin. Lewre ez dibêjim pêwîst e hemû rêxistin, hêz û saziyên Kurdan, çi yên li welat û çi jî yên li derveyê welat, xwe ji nêzîkatiyên berjewendîxwaz dûr bixin, hesasiyeta hevdu bigirin ber çavan. Xebatên weke Konferansa Netewî nikarin di bin bandora vê yan wê rêxistinê de pêk bên, divê hemû beşên civakê li dora yek xalê bikaribin werin cemhev.

Ji bo pêkanîna Konferanseke Netewî, di destpêka vê salê de min pêşniyariyekê kiribû, ez dixwazim careke din heman pêşniyariya xwe bînim ziman;

Divê komisyoneke hevbeş a ku di nava wê de nûnerên hemû rêxistinan û çend heb jî rewşenbîrên serbixwe hebin, bê organîzekirin. Ev komisyon dikare hejmara nûnerên hemû rêxistinan weke hev destnîşan bike û nîvê kesên ku divê tevlî vê Konferansê bibin ji rewşenbîran pêkbê. Herwiha pêwîst e xercên vê xebatê ji aliyê hemû rêxistinan ve bê parvekirin.



# Ji sedî 18’ê xelkê Kurdistanê nexwendevan in

**Rewa Ebdulla** Hewlêr

Li gor rapora Netewên Yekbûyî (NY) ku meha borî hat belavkirin, ji sedî 20’ê xelkê Îraqê nexwendevan in û bajarên Dihok û Silêmaniyê li Kurdistanê digel bajarên Mussena, Mîsan û Selahedîn xwediyê bilindtirîn rêjeya nexwendewariyê ne.

Li gor rapora NY, sedemê sereke yê nexwendinê şer û alozî, binpêkirina yasayên xwendewariya bilind û daketina astê dahata xelkê ye. Li gor heman raporê, rêjeya nexwendewariyê di nav keçan de ji sedî 24 û di nav xortan de jî ji sedî 11 e.

Serjimêriyên rêxistinên ser bi NY ku li tevahiya parêzgehên Îraq û Herêma Kurdistanê hatine belavkirin û tê de rêjeya nexwendewarî di hundirê temenê 10 heta 49 saliyê de hatiye girtin, encamên serjimêriyê derxistine hole ku bajarên Diyala, Bexda, Kerkûk û Hewlêr xwediyê kêmtirîn rêjeya nexwendewariyê ne û zêdetirîn rêjeya nexwendewariyê li bajarên Mussena, Mîsan, Selahedîn, Dihok û Silêmaniyê ne.

Rêveberê Fêrkariya Neasayî li Wezareta Perwerdê ya Hikûmeta Herêma Kurdistanê Wuşyar Hemed Hacî ragehand: “Ev serjimêrî ne rast e, rêjeya nexwendevaniyê li Herêma Kurdistanê ji sedî 18 ye.”

Li gor serjimêriya Wezareta Perwerdê, Herêma Kurdistanê xwediyê 5 hezar û 534 xwendingeh û 1.5 milyon xwendekaran e ku di hemû qonaxên destpêkî, navendî û pîşeyî de dixwînin. Sedemê zêdebûna jimara xwendekaran 1755 xwendingeh du dewamî û 277 jî sê dewamî ne.

Gor pêşbîniya beşa Serjimêriyê ya Wezareta Perwerdê, îsal zêdeyî 100 hezar xwendekaran dest bi qonaxa yekem a xwendinê kirine, lê tenê 44 hezar û 619 xwendekar ji pola 12’ê amadeyî qebûl bûne.

Rêveberê Giştî yê Xwendina Bingehîn li Dîwana Wezareta Perwerdê Ebdulezîz Serhan, ragihand pirsa sereke ya Wezareta Perwerdê kêmbûna avahiyên xwendingehan e. Wî herwiha da zanîn: “Bo nehiştina 2-3 dewamiyê li xwendingehan pêwîst e zêdeyî 3 hezar avahiyên xwendingehan bên çêkirin û ev jî wê 3 salan bidome.”

Navbirî amaje da kêmbûna avahiyên xwendingehan û zêdebûna jmara xwendekaran û ragihand: "Jimara xwendekaran li ser polên dersê pir zêde ye, ev jî astê zanistî ya xwendekaran tine jêr."

Bo rizgarbûna ji zêdebûna jimara xwendekarên ser polên xwendinê yên nav bajaran, Civata Wezîr ên Herêma Kurdistanê di butçeya îsal de rizamendî daye li ser xerckirina 150 milyar dînaran bo çêkirina 33 xwendingehên 18 polî û 13 dibistanên 17 polî li parêzgehên Herêma Kurdistanê ku niha beşek ji wan di qonaxa amadekariyê de ne.

Sekretera Komela Hîwa ya Îraqî Hena Edwer, zêdebûna rêjeya nexwendewarî û daketina astê zanistî yê xwendekaran li bajarên Îraqê bi xirabbûna rewşa siyasî û nebûna elektrîk û kêmbûna xwendingehan li gundan, ve girêdide.

Edwer sedema zêdebûna rêjeya nexwendevaniyê û daketina asta zanistî li Herêma Kurdistanê bi wê yekê ve girê dide ku jimara xwendingehan kêm e û 2-3 dewam li wan tê kirin.

Navbirî peydekirina derfetên kar bo derçûyên zanîngehan, bo berdewambûna xwendekaran li ser xwendinê wek sedemekî bi bandor dibîne û dibêje: “Bi pêkneanîna derfetên kar bo derçûyên zanîngehê, beşekî zêde ji xwendekaran wiha difikirin ku xwendin pêşeroja wan dabîn nake, loma ji xwendinê diveqetin.”

Wuşyar Mihemed Hacî eşkere kir: “Wezareta Perwerdê bo kêmkirina rêjeya nexwendewarî ji sala 2000’an ve prosesa nehiştina nexwendewarî destpê kiriye û heta niha 3 milyar û 750 milyon dînar di vê pêxemê de xerc kiriye, di encam de kariye rêjeya nexwedewarî ji sedî 34 bo ji sedî 18 kêm bike û bo gihandina wê bo ji sedî 9, pêwîstiya wezaretê bi 6.5 milyar dînaran heye.”

*Lêkolîn*

## Rojane li Herêma Kurdistanê 17 jin tên berdan

**Hewlêr (Rûdaw) –** Li gor serjimêriya civata dadwerî ya Herêma Kurdistanê tenê di şeş mehên yekem ên îsal de 3533 bûyerên telaq û cudabûnê (2274 telaq, 1259 cudabûn) li dadgehên Herêma Kurdistanê hatine tomarkirin. Di sala 2008’an de 3663 bûyerên telaq û cudabûnê hebûn, herwiha sala borî jî 4237 bûyer hebûn.

Li gor van serjimêriyan, rêjeya telaq û cudabûnê li Herêma Kurdistanê zêde dibe, li gor sala 2008’an rêje ji sedî 92.9 û li gor sala borî jî rêje ji sedî 66.7 zêde bûye.

**Li gor lêkolîneran sedemên telaqdayinê**

- *Daxwazkirina mala serbixwe ji aliyê jinan*
- *Hevsergîrî ji bo têrkirina xwestekên seksî û nebûna evîndariya rasteqîne*
- *Destkurtiya kuran û daxwazên zêde yên keçan*
- *Sariya seksî û îxaneta hevsergîrî*
- *Çavlêkirina rêzefîlmên biyanî*
- *Bikaranîna xerab a telefonên mobile û înternêtê.*

**Tendirustî**

# Sorik



**Dr. Xoşnav Seyîd Mihemed***

Ev nexweşî piranî bi zarokan re tê dîtin. Tê texmînkirin ku li cîhanê salê 1,5 milyon zarok ji ber nexweşiya sorikan jiyana xwe ji dest didin. Vîrusa sorikan bi rêya nefes girtin û standinê tê belavkirin. Dema ku zarok bi sorika dikevin vê nexweşiyê ji 4 rojan û piştî 5 rojan li derdorê xwe belav dikin. Ji bo ku vîrusa RNA bê destnîşan kirin di sala 1974’an de li Almanyayê ji aliyê Îstîtuya Robert Kochve lêkolînek hat kirin û di sala 1980’an de pêşniyaza derziya Kombînasyonê bi Masern û Mumps hat kirin. Ev vîrus ji malbata Togavîren û Rubîvîren tê.

**Nîşanê nexweşiya sorikan çi ne?**

**Dr. Xoşnav Seyîd Mihemed:** Wek tê zanîn nexweşiya sorikan bi taybetî bi zarokan re tê dîtin, ev yek ji vîrusan çêdibe. Nîşanê nexweşiya sorikan di serî de bêhalî, bêhuzurî û gerbûna laş ango ya bedenê, piştre jî di çav de sorbûnî, kuxik, herikandina bêvilê û pir kêm jî êşa movika derdikeve. Di nav 3-4 rojan de di çerm de nuqteyên sor xuya dikin. Ji eniyê destpêdike û di nav 3 rojan de xwe dighîne lingan. Pêwîst e germbûna can di nava 5 rojan de dakeve, dema ku danekeve û hîn berdewam be wê demê pirsgîrêkek pir cidî heye.




**Sorik dibe sedema çi pirgirêkên zarokan?**

Sorik dibe sedema ku di guhê navîn de nêm (îltîhab) çêbibe, zature û nêma mêjî jî tê xuyakirin. Li welatê ku ev pirsgirêk bi piranî çêdibin, dibe sedema ku ew kes kerbibe; ji ber wê ye jî li van welatên ku nexweşiya sorikan bi zarokan re çêbûye li wir kerbûn jî pir e. Dema ku ev nîşan xuyakirin hingê metirsiya mirinê jî pirtir dibe. Ji bo wê piştî çêbûna zarok heyvê pêşîn zarok ji dayîka xwe parastina wî ya antîkorlardan heye, lê piştre parastin kêmdibe. Dema ku zarok 9 mehê xwe tije kirin dibe di demek herî kin de derziya li hember sorikan li wan bê xistin. Herwiha ji bo ku zarok hîn baştir ji vîrusan bê parastin dema ku bû 15 heyvî jî bê dubarekirin pir başdibe û derziya kabakulakê jî bê çêkirin ji bo zarok baş dibe.

**Dibe malbat li mal çi bikin?**

Pêwîst e zarokê/a xwe dûr bigrin ji kesên din ji bo ew kes jî vê nexweşiyê negirin; bi taybetî ji jinên ducanî û yên li hember sorikan derzî li wan nehatî kirin. Divê zarokê/a xwe li ser cih dirêj bikin û rehetiya xwe bigre heta ku zarok xwe hîsbike ku êdî zindiye û bêyî alîkariya kesek din dikare xwe li ser lingên xwe bigre. Divê xewlî û firaqê xwarinê cuda bikin.

**Amadekirin: Zelal Çelîk**

**Dr. Xoşnav Seyîd Mihemed ji Rojavayê Kurdistanê ye. Niha li Almayayê dijî û pizîşkê zarokan e.*

# “Gorbaçov soza dîsa avakirina Kurdistana Sor dabû me”

Wekîl Mistefayê ku di sala 1989’ê de serokatiya Komîsyona Îlankirina Komara Laçîn kir, niha weke penaber li bajarê Ancona yê Îtalyayê dijî. Wekîl Mistefa ji Rûdawê re li ser hewldana ji bo avakirina Komara Laçîn û sedemên serneketina vê hewldanê axivî.



Rûsan ji Mistefa re gotin hûn dereng man em nikarin pişta we bigirin

**Rûdaw: Ji kengê de Kurd li Kafkasyayê hene?**

**Wekîl Mistefa:** Pêşî dixwazim bêjim 6000 sal in ku Kurd hertim li Kafkasyayê hebûn. Ev di çavkaniyên dîrokî de jî heye. Miletekî ku dîroka wî tune be, dahatûya wî jî tune ye. Dema me dest bi vê doza xwe kir, Hikûmeta Sovyeta jî arşîv vekirin, wan jî hebûna gelê Kurd a li ser wan axan qebûl kirin û gotin erê berê jî Kurd li vê derê serdest bûn. Ji dewleta Şedadiyan heta Kurdistana Sor.

**We çawa û di kîjan mercan de dest bi doza Komara Laçîn kir?**

Dema Gorbaçov li 1985’an hat ser text, wî rewşa Sovyetê ferq kiribû. Wî Partiya Komûnîst rexne dikir. Wê çaxê me fêm kir ku êdî wê Sovyet hilweşe, lê ji Kurdan re wê cihê revê tune be. Ji wê çaxê ve min dest bi polîtîkaya pratîk kir. Min digot divê em gel rakin ku dema Sovyet hilweşe em bikaribin gel li cihekî berhev bikin. Ger em nekin wê me qir bikin. Em mecbûr bûn gelê xwe ji qirkirinê biparêzin. Wê çaxê ji ber van hewldanên min Azeriyan ji bo ku min bikujin xwestin min bigrin û bidin Ozbekîstanê. Kurdên li Azerbeycan û Ermenîstanê rabûn zarokên xwe neşandin dibistan, gotin ‘hûn çima wiha li Mistefa dikin, çi gunehê wî heye? Dûre generalek ji Moskovayê hat Azerbeycanê. Ev kesên ku ew leyistok li min kirin ji karê wan avêtin û dîsa berpirsyariya min şûn ve dan min. Sala 1985’an rewşenbîrên me hatin, em rûniştin. Êdî me dest bi doza xwe kir. Sala 1988’an Ermenistanê Qerebax tevlî axa xwe kir, lê Azeriyan dest bi qira Ermeniyan kir. Ez jî li wê derê bûm. 4000-5000 Ermenî kuştin. Ermeniyan jî 20.000 Azerî talan kirin, dest avêtin jinên wan, gelek tiştên xirab kirin. Di heman demê de berdan Kurdên Misilman jî, lê ew talan nekirin, gotin ji axên me derkevin. Dûre Kirgizîstanê jî 5000 Kurd ji axên xwe derxistin û ew çûn Rûsyayê. Li Kazakîstanê gelek malên Kurdan hatin şewitandinê. Li ser van bûyeran min dest ji wezîfeya xwe berda.

## “Serokê îstixbarata Nahçivanê bûm”

**Te li ku û çi kar dikir?**

Li Azerbeycanê Serokê Îstixbarata Nahçivanê bûm. Berê jî di îstixbarata Kirgizîstan û Ozbekîstanê de xebitîbûm.

**Hevdîtênên ji bo Komara Laçîn we bi kê re çêkirin?**

Cigirê Gorbaçov û serokê parlamentoyê em 13 kes qebûl kirin, bi giştî ji her komaran nûnerên Kurdan di vê komisyonê de hebûn. Cigirê Gorbaçov got ‘ez bi navê Gorbaçov we qebûl dikim û Gorbaçov we silav dike û dibêje hinekî sebir bikin, em ê di demek nêzîk de dîsa Kurdistana Sor ava bikin.’ Ji bo vê yekê Serokê Azerbeycanê Mutelib jî 3 caran vexwandibûn Moskovayê. Cara yekê ew nehat, berdestê wî Mamedov hat. Li parlamentoyê em jî rûniştîbûn. Mamedov got ‘ti demê li Kafkasyayê Kurdistan çênebûye, çê nabe jî. Li Azerbeycanê hîn bi hezaran Kurd hene. Hûn dixwazin em weke Ermeniyan berdin wan jî an jî qir bikin.’ Min jî bersivek tund da wî. Cara duyem dîsa Mamodov hat got ‘Kurd nizanin dewlet çawa tê birêve birin.’ Min jî hema got ‘hûn bi xêra Rûsan bûn mirov. Hûn jî berê ne dewlet bûn. Hûn nû fêr dibin ku bibin mirov. Mamedov şûnve kişiya. Cara sisiyan dîsa got ‘niha pirsgirêka Qerebaxê heye. Em vê meselê hal bikin, dûre vegerin ser pirsgirêka Kurdan.’ Lê Sovyet hilweşiya. Rewşa me jî wisa ma. Ger Gorbaçov wê demê bimaya, di nava 2 mehan de Kurdistana Laçîn wê çêbibûye.

## “Me bi deklerasyonekê Komara Laçîn îlan kir û ala xwe hilda”

**Komara Laçîn çawa hat îlankirin?**

Me û Moskovayê li hev kiribû ku em ê Komara Laçînê ava bikin û bibin xwediyê axa xwe.

Ez rabûm tev malbata xwe çûm Laçînê. Ermenî û Rûs li pişta me bûn. Me bi deklerasyonekê Komara Laçîn îlan kir û ala xwe hilda. Wê demê çapemeniya Rûsan gotin Kurdan Komara Laçîn îlan kir.’ Çapemeniya cîhanê eleqeyek mezin nîşan dan. Kurdên Êzîdî yên di nava Artêşa Ermeniyan de hatin gotin em artêşa Laçînê ne. Me îlan kir ku ev der erdê Kurdan e û dewleta Kurdan tê damezrandin. Em 19 heval weke komîta avakirinê berhevbûn û di nava 2 mehan de wê hilbijartin çê bibûya. Bi vî rengî wê parlamento û hikûmet bihata avakirin. Gelek kes dibêjin, dinvsînin serokêwezîr, lê ez ne serokwezîr bûm. Ez serokê komîsyona îlankirina Komara Laçîn bûm.

**Kurdistana Sor Rûsan hilweşand, ji bo çi dîsan piştgirî dan we?**

Sovyetê dixwest hemû gel di bin desthilatdariya wan de bijîn. Lê di sala 1927’an de Celaliyan li Araratê raperîn îlan kirin. Sovyetê jî wê demê alîkarî dida Ataturk, ji bo ku raperîna Araratê têk bibe. Ji ber ku Sovyet ditirsiya ku rojekê Kurdên Kafkasyayê jî wê weke wan Kurdên Bakur hember wan rabin raperînan. Di sala 1927’an de bi sedema raperîna Araratê Kurdistana Sor hilweşandin û di sala 1937’an de bi sewa serhildana Dersimê Kurdên Misilman sirgûnê Asya Navîn kirin.

**Ji bo Komara Laçîn çima dîsa piştgirî dan we?**

Berjewendî hertim tên guhertin. Dema Sovyet hilweşiya, Ermeniyan nedixwest Qerebaxê wenda bikin. Bi sedema Kurdistanê dixwestin bajarê Gencê bistînin. Rêya petrol û gazê wê giş bi axên Kurdan re bihatana girêdanê. Ger wiha bibûya petrol û gaza Asya Navîn wê mecbûr biçûya Rûsyayê. Lewma piştgirî dan me. Lê Azerî rehet nesekinîn, gotin em du dewlet in, lê yek gel in, em Tirk in. Rûsan jî got bila wisa be. Hûn Tirk in û artêşa me li Azerbeycanê naxwazin, wê demê Qerebax ya Ermeniyan e, Kurd wê axên xwe bigirin. Tariş, Lezgî û gelên din jî wê axên xwe bistînin, hûn jî bi ku ve diçin herin. Me jî wê çaxê soz da ku em ê bihêlin Artêşa Rûsî bê Kurdistanê.Wan jî soz dan ku ji me re Akademiya Şer çêbikin; cil, çek û perwerdeya leşkerî bidin me. Me jî me yê bajarê Gencê bigirta û weke dema Şedadiyan bikira paytexta xwe. Li ser vî esasî me bi gelên din re jî li hev kir ku em Azeriyan ji axên xwe derxînin. Sînorê Azerî û Îranê Rûsan wê bigirta, sînorê Rûsan û Azeriyan jî wê Daxistaniyan bigirta. Bi vî rengî Azerbeycan diket hepsê.

## Amerîka û Tirkan xwestin li Kafkasyayê pirsgirêk dernekevin

**Çima hûn serneketin?**

Wê demê Îranê ûltîmatûm da Ermenistanê, gotin hûn li ser sînorê Îranê Kurdistanê çêdikin, ev wê ji bo Kurdên me nebaş bibe. Ger hûn Kurdistanê çêkin em ê bi Azeriyan re bibin yek û erîşê ser we bikin. Tirkan leşkerên xwe anîn ser sînorê Ermenistanê. Gotin em ê Erîvanê bombebaran bikin. Negotin hûn alîkariya Kurdistanê dikin, gotin hûn alîkariya PKK’ê dikin. Wê demê generalê Rûs Burbulis hat Erîvanê ji Tirkan re got heqê we tune hûn Erîvanê bombe bikin, em nahêlin, Êrîvan di bin destê me de ye. Tirk tirsiyan û sinorên xwe yê bi Ermeniyan re girtin, ambargo danîn ser, nehiştin rêya hewayê jî bikar bînin. Piştre li Stenbole civînek hat organizekirin. Bangî Yeltsin jî kiribûn. Di wê civînê de Amerîka û Tirkan xwestin ku li Kafkasyayê pirsgirêkan çênekin. Yeltsin ne gotibû erê ne jî na. Dûre Eliyev hat ser desthilatdariyê. Eliyev nehat hilbijartinê, rasterast hat ser desthilatdariyê û ji Hikûmeta Rûs re got Kurdistanê çênekin, heqe Lezgiyan nedine, Azerbeycanê belav nekin, em ê Artêşa Rûs li ser axên xwe qebûl bikin, em diwazin di nava komarên Sovyetê de cih bigirin. Li ser vê yekê Rûsan gazî min kirin, gotin we di wextê de gel neanî Kurdistanê, hûn dereng man, niha jî em nikarin êdî pişta we bigirin.

## “Ocalan wê 300 gerîlla ji bo me bişanda”

**Ji Kafkasyayê tu çima derketî?**

Ez li ser vexwendina birêz Ocalan derketim çûm Sûriye. Beriya herim, Serokê Ermenistanê Robert Koçeryan ji min re got neçe. Got Eliyev Rûs xapandine, lê were dev ji Kurdistanê bernede. Got ev axên we yên hezar salane, werin lê xwedî derkevin. Lê min got Ocalan bang dike dive ez herim. Ez 3 meha li cem birêz Ocalan mam. Ji min re got here serokatiya Kurdistana Qafkasyayê bike. Ger Ermeni li ser gotina xwe rastî bisekinin ez ê 200-300 gerilla jî bidim te ji bo ku gel li dora we bicive. Ji ber ku gelek rewşenbîrên Kurdan bi gotinên derew di nav gel de propaganadaya derew dikirin ku wê Ermenî Kurdan qetilbikin. Hinek Kurdên Misilman dest pêkirin, gotin Êzîdî û Ermenî kafir in, hinekan got eger hûn zarê xwe bidin cem Mistefa wê Azerî werin we hemuyan qir bikin. Li ser vêya ew kesên ku soz dabûn min jî tirsiyan û nehatin. Dema ez vegeriyam Ocalan kaset û name ji bo Ermeniyan dan min. Lê dema vegeriyam Sîriyê dest danîn ser. Piştî çend mehan jixwe birêz Ocalan hat girtin, ez jî çûm Rûsya.

**Lê çima tu derketî Ewrûpayê ?**

Ez leşker im, ne dîrokvan im. Lê min xwest dîroka Kurdên Kafkasyayê binivsînim û ez gihiştim arşivên Rûsî yên kîrîlî û dest bi nîvîsandinê kir. Azerî pê hesiyan, ji min re gotin em ê erîşî zarokê te bikin û neviyên te birevînin û bikujin. Azeriyan bi sedema alikarîkirina PKK’ê re 3 kes ji malbata min kuştin. Wan di nava polîs û artêşê de kar dikirin. Ez mecbûr bûm ji wê derê derkevim. Sala 1999 hatim Îtalyayê.

**Niha çi dikî?**

Niha min nivîsandina pîrtûka dîroka Kurdên li Kafkasyayê xelas kir.

***Hevpeyvîn: Arjîn Yaman***

**Bîografî**



Wekîl Mistefa di sala 1938’an de li Semerkantê hatiye dinê. Malbata wî piştî hilweşandina Kurdistana Sor tevî Kurdên din sirgûnê Ozbekîstanê bûne. Sala 1956’an de di serhildana Macarîstanê de weke fermandar cîh girt. Di Komîteya Navendî ya Partiya Komunîst de ji bo propaganda û ajîtasyonê wezîfedar bû. Dûre li Kirgizîstanê weke albay wezîfeya xwe berdewam kir.

# “Wezareta Çandê alîkarî nade hunermendên Kurd”



Aynur Dogan piştî konsera Bochumê pirsên rojnamevan Serdar Agit Boztemur bersivandin

Aynur Dogan ji ber ku Kurd e, jin e, Elewî ye û ji Dêrsimê ye rastî gelek astengiyan hatiye. Lê ji ber ku ew bi zimanê zikmakî huner dike, malbata wê pir pê kêfxweş bûye.

Hunermenda Kurd Aynur Dogan ev du hefte ye ku li Almanya li çendîn bajaran konseran dide. Wê bi taybetî bi albuma xwe ya duyem "Keça Kurda" ku di sala 2004'an de derxist, di qada hunera navnetewî de deng da. Piştî vê albumê jî me dengê wê di fîlmê bi navê “Gonul Yarasi-Birîna Dil" de ku Şener Şen û Meltem Cumbul tê de dilîstin, dema ku strana “Dar Hejirokê” got, seh kir. Ev cara yekem bû ku straneke Kurd di fîlmeke Tirk de dihat weşandin. Aynur Dogan rewşa piyasaya muzîka Kurdî li Tirkiyê baş nabîne û dibêje ku Wezareta Çandê ya Tirkiyê ti alîkarî nade hunermendên Kurd û berhemên kurdî. Dogan piştî konsera Bochumê bi me re rûnişt û pirsên me bersivandin.

**Rûdaw: Niha hûn hunermendeke naskirî ne û we rêyeke dirêj li pey xwe hiştiye. Gelo di vê rêyê de we zehmetiyan kişand an na?**

**Aynur Dogan:** Zehmetiyên ku gelek kesan dîtibe, min jî dîtine. Eger hûn li Tirkiyê bijîn û Elewî bin, li ber Elewitiyê hûn jin bin, herwiha hûn ji Dêrsimê bin û ev jî têr nake û eger hûn Kurd bin, ne mimkûn e ku hûn rastî pirsgirêkan neyên. Weke hemû kêmnetewan, hemû nasnameyên bê maf, min jî pirsgirêk dîtin.

**Maltaba we gelo alîkarî dan we, an nexwestin hûn hunerê bidomînin?**

Jiber ku ez stranên kurdî dibêjim malbata min ti caran dijbertiya min nekir, lê carna ditirsiyan ku tiştek bê sere min, lê nebûn asteng. Ez dikarim bêjim ku hertim alîkariya min kirine û bi min şa bûne. Wan jî baş dizanîbû ku ez tenê dikarim bi zimanê xwe hunerê bikim û tê de pêşkevim. Lê dema ku me mala xwe anî Stenbolê hinek tirs û guman bi wan re çêbûn. Em hatibûn metropeleke mezin û me nizanibû ka wê çi bê sere me. Mînak wek her malbateke koçber me jî pirsgirêka adaptasyonê dît.

**We behsa hunera bi zimanê zikmakî kir, vê demê di rojeva siyasî de xwesteka perwerda bi zimanê zikmakî heye... Hûn di difikirin derbarê de?**

Di zimanê me de gelek tişt hene ku hîn em nizanin û pê nehsiyane. Dema ku ez gotineke bi kurdî nû fêr dibim, an ji dayika xwe dibihîsim, wek ku min xezîne dîtibe gelek pê kêfa min tê, lê em ji kultur û zimanê xwe dûr xistin. Ez di hêla xwe de, her ji destê min çi bê, dikim û ez ê bikim jî. Ez dibînim ku me gelek tiştan wek dinamîkên kultura xwe, rûmetên wê wenda kiriye. Dema ez vê yekê difikirim gelek xemgîn dibim û dilê min perçe perçe dibe. Eger perwerda zimanê zikmakî tunebe wê kurdî pêşnekeve. Divê kurdî bê axaftin, bê hînkirin, bê heskirin û belavkirin. Ji bo pêşketina vê zimanê, divê ev ziman di jiyana rojane de bê bikaranîn. Kurmancî hinek xwe pêj de bir, sîstema xwe da runiştandin, lê rewşa Dimilkî (Zazakî) xirab e.

**Gelo we perwerda kurdî standiye?**

Min ti perwerde neditiye, lê jiber ku kurdî zimanê min ê dayikê ye, ez têra xwe dizanim. Ez heta 7 saliya xwe, bi tirkî nizanîbûm. Tenê bi kurdî diaxivîm. Piştî ku ez çûm dibistanê min bi zimanekî biyanî perwerde dît. Dema zarok ne bi zimanê xwe, lê bi zimanekî biyanî perwerde bibîne, ji zimanê xwe qut dibe û wî jibîr dike. Ji ber vê ez niha carna di kurdî de zehmetiyan dikişînim.

**Dema ku Serokwezîr behsa Dêrsimê kir, we çi hîs kir?**

Em di pêvajoyeke wisa de ne ku guherandin şert e. Divê Tirkiye jî di vê pêvajoya guherandinê de derbas bibe. Kesên ku hîn nasname û çanda Kurdan nasnekiribin navê Dêrsimê bînin ser zimanê xwe, tişteke ne dilsozî ye. Lê eger Serokwezîrê vî welatî rabe bêje, “Li Dêrsimê komkujî hatiye kirin”, gotineke gelek girîng e. Lê tenê bi gotinê tişt naguherin. Pratîk divê. Eger tenê di gotinê de bimînin ew jî tê wê wateyê ku ev kes li ser êşên gelan siyasetê dikin. Ev sûceke dîrokî ye; divê ji bo qurbaniyên vê komkujiyê çi pêwîst be bê kirin. Ji malbata me jî gelek kes di komkujiya Dêrsimê de hatine kuştin, em baş dizanin komkujî çî ye.

**We di serî de gotibû ku hûn jiber jin in rastê pirsgirêkan tên, pirsgirêkên çawa?**

Jin wek li her deverên dinyayê, li Tirkiyê jî rastî astengiyan tên. Ev civak hîn jinê wek kesayet, wek xwediyê nasname nepejirandiye. Her çiqas di yasayan de jin û mêr wekhev jî bên xuyakirin, lê di pratîka jiyanê de cudahî didome. Hemû astengî li aliyekî, lê eger hûn jineke Kurd bin û bi muzîkê re mijûl bin, wê gavê pirsgirêkên taybet derdikevin. Em vê muzîkê di nava gelek şertên zehmet de çêdikin. Ji ber ku di sektora muzîka kurdî de hîn gelek tişt cihê xwe negirtine. Wezareta Çandê ti alîkarî nade hunermendên Kurd.

Li Tirkiyê piyasaya muzîkê ber bi platforma dijital ve diçe, muzîka tirkî xwe ji vê yekê re adapte kiriye, lê muzîka kurdî na. Divê muzîsyenên Kurd bêne cem hev û ji bo mafê weşanên têbikoşin. Ji bo berdewamiya muzîka kurdî ev tişt şert e. Divê hunermendên Kurd ev yek ji rayedarên dewletê bipirsin, çima mafê weşanê (telîf) nadin wan?

**Gelek kes we wek dengê jina Kurd dihesibînin. Hûn jî xwe wisa dibînin?**

Ez li rûmetekî xwedî derdikevim; eger ez ji mirovên me re deriyekî biçûk be jî, karibim vekim, pê gelek kêfxweş dibim. Lê ez xwe wek pêşeng, wek nûner nabînim, gelek hunermendên Kurd ên xwedî rûmet hene.

**Ji bo çareseriya pirsgirêka Kurd carna em navê hunermendan jî dibîsin, her yek tiştekî dike...**

Ji bo aştiyê gelek hunermend çi ji destên wan bê, dikin. Hemû jî heman pirsgirêkê dibînin û heman stresê dikişînin. Ji ber rewşa welat gelek hunermend hene ku nikarin li ser karê xwe mijûl bibin. Ji ber ku siyaset ketiye rojeva her kesî. Hunermend dikarin pêvajoya aştiyê xurt bikin, lê nikarin çekan rawestînin. Heta çek neyên rawestin, aştî nayê. Her roj, ji her du aliyan cenazê bên, hasten dijiminatiyê derdikevin pêş. Ji ber vê, di vê demê de ji hişyariyê zêdetir eger mirov tiştên zêde û aktîf ji hunermendan hêvî bike, nabe.

**Çapemeniya Kurd, medyaya Kurd rastî gelek astengiyan tê...**

Ez jî yek ji wan hunermanda me ku êrîşa li dijî Roj Tv şermezar kiriye, tevlî kampanyaya îmzeyê bûme. Ji bo min azadiya çapemeniya Kurd, azadiya ziman û nasnameya Kurd e.

***Hevpeyvîn: Serdar Agit Boztemur***



Gelo wê mafê perwerda ziman bidin an nedin? Gelo wê hebûna me bipejirînin an na? Gelo wê hurmetê însan, çand, ziman û baweriya me bidin an na? Axaftina zimanê zikmakî jixwe mafê min e; baweriya min, çanda min, jixwe mafên min in. Ev mafên mirovahiyê ne. Çima ezê ji bo van mafan şer bikim û çima pêdiviya min a aştiyê hebe. Divê em mafên xwe nekin mijara guftûgoyan.

## Bi ‘Pêlava Birîndar’ têkêvin riya Kurdistan!

**Koln (Rûdaw) -** Peyamnêrê me û nîvîskar Evdile Koçer, bi pirtûkek nû derket pêşiya xwendevanan. Pirtûka ji 69 çîrokan pêk tê, bi giranî behsa çîrokê pêlav û şerê li Kurdistan dike. Nivîskar, psîkolojiya şerê li Kurdistanê bi rêya van çîrokan nîşanî xwendevanan dide.

Pirtûka Evdile Koçer a bi navê "Pêlava Birîndar" çend roj berê derket. Evdile Koçer di pirtûka xwe ya nû de bi zimanêk zelal behsa şerê li Kurdistanê û zilma dewleta Tirk a li ser Kurdan dike. Koçer, bi vî awayî tarzek cuda diyarî çîroka kurdî dike. Nivîskar, taybetî li ser malbata xwe û der û dora xwe sekiniye û bi awayek îronîk çîrok afirandiye. Di pirtûkê de hinek çîrok hene ku ji 50 peyvan kemtir in, lê gava mirov dixwîne li ser hîste mirovan gelek bandor dihêle.




Nivîskar Evdile Koçer, pirtûka xwe ya bi navê “Pêlava Birîndar” wiha dide nasandin: “Ev kurteçîrokên di pirtûkê de gelekî kurt in, carina bi pênc şeş hevokan, carina jî bi bîst hevakon diqedin. Piraniya kurteçîrokan rewş û derûniya şerê dawî yê ku ser rihê însanan şopa xwe hiştiye vedibêje. Şer û mirin û kuştin îro bûye parçeyek ji jiyana civakê. Ez jî endamek ji vê civakê me; ez jî vê êş û elemê heta dawiyê dijîm. Wêje jî helbet serê pêşîn divê êş û derdên civakê bi wê vegotina xwe ya xurt vebêje. Li hêla din ez dixwazim êş û birînên xwe û yên civaka xwe bi rêya hunera wêjeyê tedawî bikim.” Evdila Koçer, di axaftina xwe de hinek nivîskarên Kurd rexne dike û li gorî wî êş û derdê Kurd dikişînin nayên nivîsandin û gotin. Li gori wî çiqas berhemên wêjeyî yên xurt hebin wisa baş dibe û ew ji civakê re dibin barîkatek.



*Hewlêr (Rûdaw) - Xuşka derhênerê Kurd Behmen Qubadî, Nahîd Qubadî, fîlmekî bi navê '111 keç' dikişîne û stranbêj Ezîz Weysî ji roleke sereke tê de dilîze.*

*Fîlm behsa binpêkirina mafên 111 keçên Kurd dike û zêdeyî 200 aktor tê de beşdar in. Niha dîmenên fîlm li çend deverên Başûrê Kurdistanê tên kişandin. Ezîz Weysî ji bo Rûdawê got: "Cihê şanaziya min e ku ji bo cara yekem ez tevlî fîlmekî dirêj ê sînemaya Kurd dibim." Di '111 keç' de stafekî mezin ê teknîkkarên Îranî beşdar in û di qonaxa dawî de ye, Weysî got: "Bawer dikim ev fîlm pir baş û balkêş dibe û di festîvalên navnetewî de pileyeke zêde baş bidestve tîne."*

# Behmen Qubadî û Bêhruz Wisûqî dest dan hev

Bi derhêneriya Behmen Qubadî sal fîlmekî kurdî-farisî tê kişandin ku aktorê navdar Behrûz Wisûqî tê de rolê sereke dilîze.



**Hewlêr (Rûdaw) –** Aktorê navdar ê Îranê, Bêhruz Wisûqî ku wek Qeyser tê naskirin li Kurdistanê tevî fîlmekî sînema yê Kurdî-Farsî dibe ku Behmen Qubadî derhêneriyê dike.

Wisûqî ku li Amerîka dijî, di serdanekê de ji bo Kurdistanê, sedemê hatina xwe ji bo Rûdawê eşkere dike û dibêje: "Ev çend sal in ez û Behmen Qubadî hevdu nas dikin, berî du salan Behmen dest bi kişandina fîlmekî kir, ji ber pir mijûl bû nekarî pêşve bibe, loma dida dû derfetekê ku dest bi kar bike. Me li Amerîka hevdu dît û li ser çîroka fîlm gotûbêj kir û me biryar da di du mehên dahatû de dest bi kişandina fîlm bikin."

Bêhruz Wisûqî ku cara yekem e hevpeyvînekê ligel rojnameyeke Kurd dike, zêdetir derbarê hatina xwe bo Başûrê Kurdistanê axivî û got: "Dema min xwest herim Stenbolê, Behmen daxwaz ji min kir bêm Kurdistanê û vir bibînim, ji ber ku beşekî fîlm li Kurdistanê tê wênekişandin."

Bêhruz Wisûqî heta niha li Îran û Amerîka beşdarî zêdeyî 100 fîlman bûye û jimareke xelatên navdewletî standine. Wisûqî dibêje: "Li Amerîka tevî gelek fîlm û zincîre-fîlman bûme, lê herdem min digot ku ev ne bi dilê min bûn, loma jî min demekê dev ji kar berda. Ji min re giring ew e ku fîlm baş be, ne girîng e jimara fîlmên min zêde be. Niha ev yekem karê min ê serekî ye ku piştî 23 salan dixwazim ligel Behmen Qubadî li Kurdistanê bikim."

Xelîl Wisûqî ku wek Bêhruz Wisûqî tê naskirin, li bajarê Xoy li Rojhilatê Kurdistanê jidayik bûye. Navborî 73 salî ye û sala 1978'an ji Îranê derketiye, ji ber beşdarkirina wî di fîlmê Qeyser de ku di heyama Şah de, navdariyeke zêde bidestxist û nav wî kirin Qeyser, ku hevserê berê yê stranbêja bi nav û deng Guguş bû. Wisûqî zêde dixwaze vegere Îranê û dibêje: "Her kes li ku jidayik bûbe, herdem evîndarê wê deverê ye. Nemaze ku li Îranê jidayik bûme û hemû bîreweriyên min li wir in, çawa dikarim jibîr bikim? Hemû kesên koçber ên cîhanê dixwazin vegerin welatên xwe."

Derhênerê Kurd Behmen Qubadî ku ev çend meh e li başûrê Kurdistanê bi karê xwe yê hunerî yê nû ve mijûl e, derbarê Wisûqî bo Rûdawê ragihand: "Bêhruz yeke ji kesên ku kêfa wan pir ji Kurdan re tê. Piraniya fîlmên ku di wan de beşdar bûye li Sine, Kirmaşan, Seqiz û Bane bûn û çanda Kurd baş nas dike. Bêhruz ne tenê qehremanê Tehranê ye, lê yê hemû neteweyên Îranê ye. Ez jî wek Kurdekî ku li Bane mezin bûm, hezkerên fîlmên wî me, ligel fîlmên wî mezin bûme, herdem min hewl dida wî bibînim û ligel kar bikim."

Wek Qubadî amaje pêda, fîlmê ku di du mehên dahatû de dest bi wênekişandina wî tê kirin, berhemê Kurdistan û Îran e û çîroka fîlm behsa çend bûyeran li Yûnanistan û Kurdistanê dike: "Niha em li ser fîlm kar dikin, lê me hê dest bi wênekişandina fîlm nekiriye."

## Hekîm Sefkan

## Meş Klîp



Dakev vê newalê, bi vî kaşî ve hilkişû bimeş, bimeş û hey bimeş.. Li kêleka avê, li ser rê, ku tu meşiya bila destên te her li ba bibin. Li gorî ritma stranê, bila bihejin û bimeş.

Fantazî û hunera derhênerên video klîpên kurdî ji meşê wêdetir anîna komeke govendê ye û li dora stranbêjan dîlanê dikin û hew. Eger ku ez bêjim ez ji ber meşa stranbêjan di klîpan de diwestim, nekenin. Stran ku tenê mirov guhdar bike, ew di rêya guh re diçe ser dil û ku dil û guh bi hev re stran pejirandin, tê wateya serkeftina stranê, lê ku bû video û stranbêj hate ber kamerayê, êdî çavan jî vexwendeyî trada pejirandinê dike. Çav ne weke guh tenê deng dibihîse, ew cil û berg, liv û tevger, rengên sar û germ û gelek tiştên din dişopîne, loma pejirandina çav ne wek a guh hêsan e. Çav bedewbûn-estetîkê dixwaze, loma divê berî her tiştî, strana ku ji bo video klîpê bê hilbijartin, straneke ku pêşî dil û guh ew hezkiribin, pejirandibin. Yanî her stran ji bo kilpan nabe.

Piştre dora estetika stranbêj, bedewbûna rengan tê. Bedewbûna rengan ne tenê tê wateya rengên kesk û sor û zer û şîn û.. Reng di hunerê de, tê wateya fanteziyan, derxistina rengên ku çav hîn ew nedîtine, yan jî kêm dibîne. Her wiha tê wateya liv û tevgerên bedenê, awir, cil, rû û dêm. Yanî ne tenê ling û dest. Yanî ne tenê meş û hejandina destan. Ez tê naghêjim çima klîpên kurdî tenê meş, hejandina destan û dîlan in. Dîwarek 2 metro bilind, 3 metro fereh, background-plana paş-computerek, programek, dikarin bi milyonan rengan derxin, lê nizanim çima derhêner xwe mecbûr dibînin ku stranbêjan bi kaşan ve hilkişînin û hema bidin meşandin. Çend qirûşên zêde, dikarin bi milyonan çavan rehet bikin.

Bi nerîna min di vê rojê de em nikarin bêjin em Kurd in hewqas ji me tê, ji ber ku di axavtinê de, di demokrasiyê de em dersan didin xelkê. Em rengên objektên kamerayê nasnakin, em xwe derhêner dibînin. Wekî ku hemû derfet hene, divê ku berhem jî perefesyonel bin. Helbet meş, av, hejandina destan û dîlan jî dikarin bibin parçeyek ji video klîpekê, lê ne bi ecêba klîpên me ku ji serî heta dawî meş e.

Bêguman hilbijartina straneкê ji bo klîpê bi serê xwe pirsgirêkek e, ji ber ku ne hemû stran dibin klîp, loma jî gelek car derhêner stranê dikin sedema ku klîp zuha bimîne. Bê çawa derhêner ne mecbûre stranbêj bi kaşan ve hilkişîne û bide meşandin, wiha jî stranbêj ne mecbûr e ku ilahî divê klîpa wî hebe yan jî bi çavgitînkê stranê hilbijêre yan na wê mecbûrî meşê bimîne. Bawerkin ew dimeşin, ez diwestim.

# Li Bottropê pêşangeha pirtûkên kurdî




**Seyidxan Kurîj** Bottrop

Konfederasyona Komeleyên Kurdistan li Ewrûpa-KOMKAR.eu, li bajarê Almanya Bottropê Pêşangeha Pirtûkên Kurdî ya çaremîn li dar dixe. Ew pêşangeh bi piştgirî û hevkariya HEVALTÎ-Bottrop e.V., Dayira Kulturê ya Bajarê Bottropê, Jugendamt der Stadt Bottrop, Referat Migration (RAA, Projektburo, IB), Radio Kaktus e.V. û DPWV – Bottrop tê amadekirin.

Berê jî KOMKAR li bajarên Köln, Duisburg û Wuppertalê pêşengehên Pirtûkên Kurdî li dar xistibû.

Pêşangeh îsal wê di roja 15'ê Cotmehê de saet 17.00'an da bi axaftinên Wezîrê Kulturî yê Hikumeta Herêma Kurdistanê Dr. Kawa Mehmûd destpê bike. Piştre Serokê Şaredarê Bajarê Bottropê Bernd Tischler, Serokê KOMKAR.eu Kovan Amedî li ser giringiya pêşangehê biaxivin. Di heman rojê de kokteylek jî tê amade kirin.

Roja duyem wê serokê Yekîtiya Nivîskarên Kurdistan şaxa Duhokê Hesen Silêvanî, Kemal Burkay, Yilmaz Odabaşi û Yelda Karataş pirtûkên li ser ziman û wêjeya kurdî û gotarên xwe peşkeş bikin û pirtûkên xwe îmza bikin.

Di heman rojê de rojnamewanên Tirk Hîlal kaplan û Çengiz Çandar li ser babeta "Di Pirsa Kurd de Rola Medya Tirk" wê seminer bidin.

Roja yekşemê wê Edîp Çelkî, Hesûn Cewar, Hoşeng Broka, Hadî Babaşêx, û Bilîk Sommer Xan helbestên xwe bixwînin. M. Emîn Bozarslan bi navê "Baxçê Zimên", Muhsin Qoçan bi navê "Bandora Helbesta Klasîk Li Ser Helbesta Hevdem", Dr. Elî Teter bi navê "Olên Dêrîn yên Kurdistanî" û Zozan Sadeq Saeed bi navê "Di Rê û Olaxên Geşkirina Rojnamevanîya Kurdî de Jin" wê gotarên xwe pêşkeş bikin.

*Navnîşan: Saalbau Bottrop, Droste-Hülshoff-Platz 4, 46236 Bottrop*

Xunav 35 salin li Almanya ye hîn jî çavên wê li riya vegera welat e

# “Em herdemê li ser buxçika xwe rûniştin”



Ligel ku ew 35 salin li Almanya dijî û li vir bûye xwediyê kar û malbatê, hîn jî fikra wegera welat ji serê wê derneketiye.

**Dilbixwîn Dara** Bochum

Xunav Haco, li Ewrûpa yek ji jinên herî serkeftî ye. Ew nevîçirka Haco Axa ye. Jineke çalak e. bi salane di nava kar û xebata tevgerên jinan de ye, li kuderê pirsgirêka jineke Kurd hebû û ji wê alîkarî hatibe xwestin negotiye “Na” yekser destê alîkariyê dirêj kiriye.

Ew di sala 1975’an de ji bo xwendinê hatiye Almanya. Xwendiye, zewiciye, du kurên wê hene, her du jî dane xwendin. Niha li kêleka pedagogiyê, serokatiya enstîtuyeke perwerdeya zimanê almanî û integrasyonê dike.

Me pirsa jinên malbata Haco ji Xunavê kir, gelo di binemala Haco de, jin çiqas azad in? Wê wiha bersiva me da:

“Di malbata Haco de, jin heta radeyekê azad in, ruhê demokratiyekê di malbatê de heye. Ji kalikê min heta bavê min, bêguman tu bixwazê nexwazî ew cudabûna civakê xisitye navbera jin û mêr, di malbata me de jî hebû, lê belê jin xwediya gotinê bû. Mînak, ez behsa nifşê xwe bikim, me hemûyan xwend, keç û kuran bi hev re, malbatê piştgiriya xwendina me kir, em nedan paş.”

Xunav ji malbata Haco weke jina duyemîn e ku hatiye Ewrûpa. Dema ku behsa destpêka derketina derveyî welat dike, dibêje ku ew bi wê derketinê qet ne kêfxweş bû. Wê pir ji gundê ku lê mezin bûbû hez dikir û nedixwest jê derkeve: “Zehmetiya ku destpêkê ez lê rast hatim ziman bû. Dema ku min cara yekemîn zimanê almanî bihîst, min got di jiyana xwe de ezê fêrî vî zimamî nebim. Almanî zimanekî gelekî zehmet e. Ez bi tenê di mal de rûniştim, xemgîn xemgîn ez difikirîm, min digot ezê çawa fêrî vî zimanî bibim. Min gava xwe paş ve neavêt û ez baş fêr bûm.”

Li ser pirseke Xunav dixwest jina niha be, wê got: “Min dixwest hinekî bi cesaret, gavên hîn zêdetir bavêjim, ez poşman bûme, çima min gavên hîn bi cesaret navêtin! Dema mirov bi temen dibe bi wê yekê dihese. Ji ber ku jiyana malbatî û zarok berî her tiştî dihatin, piştre ez li Xunav difikirîm, ji ber vê yekê min nikaribû her tiştê ku min dixwest bikim.”

### Gelo Xunav gihişte daxwazên xwe?

“Na, ez bi xwe hîn ne razî me, lê weke ku ji min re tê gotin, hevalên min ên Alman dibêjin, Xunav jineke Ewrûpî çi dixwaze, mal, zarok, xwendin, kar. Tu wiha yî, wekî din çi dixwazî. Lê ez bi xwe dema ku dikevim nava kar, her demê pirsgirêka Kurd tê pêşiya min, problemên me hene, em bê lobî ne, ji ber vê yekê ez her demê ji xwe re dibêjim, Xunav, derfetên te gelek in, tu dikarî bêhtir bikî.”

Xunavê dixwest derbasî nava siyasetê bibe, lê belê mijûlbûna bi pirsa jina Kurd re, hîşt ku ew dûrî siyasetê bisekine, yan jî dema wê ji siyasetê re nemîne.

Ji Xunav Haco re xerîbî gelekî zor e. Ew di wê baweriyê de ye ku jiyana jina Kurd li xerîbiyê pir bi zehmetî derbas dibe, li gor ku ew dibêje jiyana wan bûye cehenem..

Xunav ji sala 1975’an de li Ewrûpa ye, lê belê çavên wê her li vegera welat e, gelekî xemgîn e ku niha nikare vegere. Dibêje: “Em her demê li ser buxçika xwe rûniştibûn, ha îro ha sibê, ji ber vê yekê min kevçiyek li mala xwe zêde nedikir, çavên me her li ser riya vegerê bûn… Lê ev bûn 35 sal, em hîn jî li vir in, pir poşman im ku em venegeriyan.”

# Li ser tîşortan sembolên Kurdan çêdike

**Robîn Botî** Frankfurt



Ciwan Cizîrî, xortekî Kurd ê 25 salî ye. Li Cizîrê hatiye dinyayê û ji çar saliya xwe û pê ve li Frankfurta Almanyayê dijî. Yanî ew jî ji nifşê nû ye ku li Ewrûpayê mezin dibe. Sedema ku koçî Ewrûpayê kirine, ji çîrokeke naskirî tê. Leşkerên Tirk ji bavê wî xwestine ku bibe cerdewan lê wan qebûl nekirine û dû re koçî Almanyayê kirine. Ji malbata wan du şehîd hene, meta wî li kolaneke cizîrê hatiye kuştin, yek ji malbata wî jî di girtîgehê de ye û wê heta 30 salên din jî li girtîgehê bimîne.

Ciwan, yek ji wan xortan e ku ew û malbata xwe şerê dawî yê li Bakurê Kurdistanê heta dawiyê jiyane. Koç, kuştin, qoricî, gerîla, girtîgeh û surgin... ew her tiştî ji zarokatiya xwe heta niha roj bi roj jiyaye. Ev serborî û koçberiya dijwar jê re bûye dersên mezin ku her dem li her derî dengê Kurd û Kurdistanê bilind bike. Ew niha li ser tîşortan al û sembolên Kurd û Kurdistanê çêdike û dineqişîne. Bi vî awayî dixwaze ku ji hemû ciwanên Kurd re pêşengtiyê bike. Van tîşortan dibe şev û şahiyan û dixwaze ku bikeve ser bedena hemû ciwanan.

Em armanca vê yekê jê dipirsin; Ciwan ji Rûdawê re dibêje ku ev al û sembolên Kurdan dema ku li ser tîşortan bêne xuyanîkirin ji gelek gotin û şîretan bêtir bandora xwe li ser ciwanên Kurd dike, “Li ser van tîşortan her kes propagandaya xwe dike. Gelo çima em ê bi vî awayî xwe nedine naskirin? Gelek ciwanên me di bin tesîra çandên din de ne, bi xêra tîşortên wisa dikare piçekî ciwanan hişyar bike.”

Ciwan gelekî aciz e ku ciwanên Kurd li şûna sembolên Egît (Mahsun Korkmaz), tîşortên Che li xwe dikin û forsa xwe davêjin, "Gelo çi tişt ji Egîtê me kêm e ku nakeve ser tîşortên Kurdan. Min xwest bi vî awayî valahiyekê jî dagirim. Gelek ciwanên Kurd bi lixwekirina tîşortên Che xwe serbilind his dikin û vê yekê jî wekî şoreşgertiyê bi nav dikin..."

Ew bi vî karê xwe ve dixwaze ku piçekî hebûna Kurdan li Almanyayê bide naskirin, “Hemû ciwanên Tirk bi alaya Tirk, bi sembolên Ataturk ve tîşoratan li xwe dikin û li her derî dimeşin. Gelo çima em nikarin bi vî awayî xwedî li serok û alaya xwe derkevin. Divê em jî bi her tiştê xwe kêfxweş bin. Divê em ji her kesî re nîşan bikin ku em Kurd in civakek in û miletek in û xwedî çand û zimanekî cihê ne.”

Ciwan Cizîrî li ser hin tîşortan wêneyê baz, egît, alaya Kurdistanê û PKK û nivîsên “Berxwedan Jiyan e”, “Amed, Hewlêr, Mahabad, Qamişlo” dineqişîne. Ew pir kêfxweş dibe ku van tîşortan ser ciwanên Kurd dibîne.

## Parlamentera Die Linke Sevîm Dagdelen:

# Kurd li Almanya di nav zehmetiyan de dijîn

Dagdelen siyaseta hikûmeta Merkelê ya li dijî penaberan rexne dike û dibêje ku di şûna pirsgirêkên penaberan çareser bikin, bi gotinên Sarrazin penaberan tewanbar dikin.

Endama Partiya Çep (Die Linke) Sevim Dagdelen, di hilbijartina sala 2005'an de kete Parlamentoya Fedaral a Alman. Dagdelen, nêzîkî 5 salan e ku wek parlamenterekî bi pirsgirêkên biyaniyan re mijûl dibe. Li gor Dagdelen hikûmeta Alman, li hemberî koçberan siyaseteke şaş dimeşîne. Parlamenter Sevim Dagdelen rewşa Kurdên li Almanya dijîn û nêzîkahiya hikûmetê li ser wan jî nirxand û got "Kurd li gor gelên koçber ên din, li Almanya di nav şert û mercên zehmet de dijîn. Li ser sîyaseta wan zordarî heye û malbat nikarin navên Kurdî li zarokên xwe bikin."

**Ev demeke dirêj ê ku hûn di parlamentoyê cîh digrin, ji roja yekem heta îro we tiştên da pêşîya xwe pêkanî yan na?**

**Sevim Dagdelen:** Me wek Partiya Çep (Die Linke) di serî de gotibu ku em ê di Parlemetoya Federal a Almanya de bibin çav, guh û dengê civatê. Ji roja yekem û heta îro, me di vî warê de xetek wisa şopand û em hertim li dijî bê edaletiyê derketin. Em herwiha li dijî şerên li cîhanê diqewimin, derketin. Me ji bo aşitîyê tekoşînek balkêş da. Me ev tekoşîn tenê li parlamentoyê neda, bi civakê re em derketin kolanan û deverên din. Ez jî wek şexsek hertim bûm parçeyek vî tekoşînê.

**Hûn di parlamentoyê de bi taybetî li ser pirsgirêkên koçberan kar dikin. Li Almanya pirsgirêkên sereke yên biyaniyan çi ne?**

Li gor berjewendiyên sermeyedaran û hikûmetê, gelên koçber li Almanya her dem bûne pirsgirêk. Îro jî ev pirsgirêk didomin. Ji ber wî, karker, xwendevan û gelek kesên din jî ji pirsgirêka civakê para xwe digirin. Polîtîkayên reforma tendurîstî û hwd. ku li hemberê krîza aborî têne meşandin, çawa li ser kedkarên Alman bandoreke neyênî dikin, bandoreke wisa li ser gelên biyanî jî dikin. Bêguman ji van polîtîkayên nijadperest herî bêtir biyanî zerarê dibînin. Herwiha qanunên ku li hemberî biyaniyan hatine amadekirin, pirsgirekên cîvakê behtir xirab dikin. Ev jî dibe sedemê bêkarî û xizaniyê.

**Li Almanya bi sed hezaran Kurd dijîn. Pirsgirêkên Kurdan çi nê û ji yên gelên din cudatirin an na?**

Li Almanya pirsgirêkên Tirkan, Îtalyanan, Farisan, Kurdan û penaberên din wek hev in. Sala peşîya me gelên ji Tirkiyê hatine, 50. salavegera hatina Almanyayê pîroz dikin. Lê piraniya Kurdan di salên 1990'an de wekî penaber hatin vî welatî. Almanya di warê mafê runiştinê de gelek biryarên dijwar girt li hemberî Kurdan. Ev biryaran ji bo Kurdan encamên ne baş derxistin holê. Kurd li vî welatî di warê siyasî de jî gelek zehmetiyan dibînin û malbat nikarin navên Kurdî li zarokê xwe bikin.

**Ev helwesta Almanya gelo li gor yasayên Yekitiya Ewrûpayê ye?**

Naxêr, bi ya min tiştek ne rast e. Li dijî yasayên YE ne.



Parlamentera Partiya Çep (Die Linke) Sevîm Dagdelen

**Rewşa cîwanên biyanî çawa ye?**

Pirsgirêkên cîwanên biyanî yên herî mezin di hêla perwerdê de derdikevin. Ev pirsgirêk roj bi roj mezintir dibin. Di sala 2008'an de sedî ji 15 ji xwendevanên bîyanî û ji sedî 6 xwendevanên Alman bê ku dîploma bistînin dev ji dibistanê berdan. Di heman salê de, xwendevanên Alman ji sedî 30 mafê xwendina zanîngehê bidestxistin. Ev hejmar di nava xwendavanên biyanî de ji sedi 10 e. Di warê karbendî de jî heman pirsgirêk hene. Sala 2008'an de perwerda karbendî (pîşe) di nav biyaniyan de ji sedî 32, di nav Almanan de ji sedî 68 e. Ev tablo jî dide xuyakirin ku hikûmet divê polîtîkayên xwe yê di warê perwerdê de biguherîne. Serkeftina zarokan bi dewlemendiya malbatan ve girêdaye. Kesên li Almanya dijîn jî roj bi roj feqîr dibin. Divê hikûmet ev bê edaletiya ku di nav niştecihan de cudahiyê derdixe, ji holê rake.

**Serokwezîr Merkel di axaftineke xwe de gotibû ku,"Kesên entegre nebin wê li hemberî wan gavên tûnd bên avêtin." Hûn ev daxuyaniya Merkelê çawa dinirxînin?**

Li Almanya, ji daxuyaniyên endamê SPD'ê Thilo Sarrazin û vir ve biyanî tên tewanbarkirin. Di raya giştî de, derheqê biyaniyan de gengeşiyek çêbû. Dû re Serokwezîr Merkel, Serokê SPD'ê Sîgmar Gabrîel û gelek sîyesetmedaren din tevlî gotûbêjên di derbarê 'yên entegre nebûne bila bên cezakirin' bûn. Ew siyasetmedaran, biyaniyan ji xwe re kirine pirskgirêk û dibêjin "Ev kes naçin qursên ziman." Lê nafikirin ku ew pereyên ji bo qursan hatiye veqetandin têr dike yan na. Eger ji destên wan were wê perêyê ji bo qursan hatiye terxankirin hîn kêmtir bikin. Yên hevlihatina civakê dixwaze divê din nav beşên civakê de cudatiyê nebîne.

**Gelo çareserî çawa çêdibe?**

Divê hikûmet dev ji van gengeşiyan berde û dest bi siyaseteke rast bike.

**Li gor nerîna we pirsgirêka Kurd li Tirkîye çawa tê çareserkirin?**

Berî her tiştî, divê li Tirkiyê di nav herdu hêzan de şer bê rawestandin. Cûdabûna ku ketiye nav herdu gelan divê rabe. Divê makezagoneke nû bê amadekirin. Demokrasî, azadî û gelek mafên bingehîn ên mirovatiyê bên dayîn. Û ya herî girîng divê qedexeya li ser zimanê zikmakî bê rakirin û mafê perwerda zimanê dayîkê bê dayîn.

*Hevpeyvîn: Jîr Ax*

**Bîografî**



*Sevîm Dagdelen, keça bavekî Tirk û dayîkeke Kurd e û di 4'ê Îlona 1975'an de li bajarê Almanyayê Duisburgê hatiye dinyayê. Di zarokatiya xwe de dest bi kar dike û bi sîyasetê re eleqedar dibe. Dagdelen, gelek sal di nav komeleyên DÎDF'ê de xebitî. Li Zanîngeha Koln, Marburg û Adelaide perwerda dadê dît. Dagdelen ji sala 2005'an û vir ve wek endameke Die Linke di nava Parlamentoya Federal a Almanya de cîh digire.*

# Ji bendava re 'Endî Beso'




**Berlîn (Rûdaw) -** Li paytexta Almanya, Berlînê ev demeke dirêj e li hemberî bendevên li Dêrsimê çalakî tên lidarxistin. Çalakiya ku her hefte li kolanan tê li darxistin koma 'Însiyatîfa Mûnzûr' organîze dike. Endamê însiyatîfê hunermend Kemal Kahraman, dibêje ku ew ê van çalakiyan geştir bikin.

Dewleta Tirk li Dêrsimê heta niha 4 bendav çekirine û dixwaze 17 bendavên din jî çêke. Wate dixwaze li ser Mûnzûrê 21 bendavan çêke û navbera navenda bajar û navçeyan qut bike. Dêrsimî jî bi salan e li dijî bendavan çalakiyên cur bi cur lidardixin û di vê çerçovê de li paytexta Almanya Berlinê berî demekê komek bi navê "Însiyatîfa Mûnzûr" hat damezirandin, di însiyatîfê de, Hunermendên wek Kemal Kahraman, Cemal Kilinç, Koma muzîka Lilith, Mavîş Guneşer û gelek kesên din hene. Ev însiyatîf her hefte roja şemiyê li kolanek Berlînê bi slogana "Destê xwe nede Mûnzûrê" û "Mûnzûr baweriya me ye" çalakiyan li dardixe û balê dikişîne ser bendeva Mûnzûrê. Di çalakiyan de, bêtir stranên Dêrsimê û yên li ser Mûnzûrê tên gotin. Heta niha hunermendên wek Metîn Kahraman, Ahmet Aslan, Cemîl Halet, Umut Akar û Ciwan Tengezar jî bi stranên xwe piştevaniya çalakiyê kirine.

**Kahraman: Armanc belavkirina Dêrsimê ye**

Hunermend Kemal Kahraman, armanca însiyatîfê wiha anî ziman: "Ev bendavên îro çêdibin, di roparên MGK'ê de sed sal berê hatine nivîsandin, ji ber ku Dêrsim ji bo wan hertim pirsgirêkek bû, lê îro bi avakirina van bendavan çand û cihên pîroz jî di bin avê de dimînin. Li gorî me ev qetliamek çandî ye û em protesto dikin." Li gor Kahraman, 21 bendav wê ji bilî cih û warên pîroz, herwiha bi hezaran kaniyan jî di bin avê de bihêle. "Li Dêrsimê hinek kanî hene ku li ti deverek din a cîhanê tune ne. Ev dewlemendîkek hêja ye, lê dewleta Tirk qîmeta wan nizane û dixwaze wan nehêle." Kahraman daxuyand ku dewlata Tirk ji bo pirsgirêka Kurd, bendavan çêdike. "Dêrsim cihekî dîrokî ye, bi dehan salan e dewlet li ser Dêrsimê dilîze û heta niha gelek komkujiyên dijwar pêkaniye û îro jî bi rengekî din komkujiya çand, war û cihê pîroz pêktîne." Kahraman, gotinên dewletê ji bo bendava jî weke derew dibîne. "Dibêjin em dixwazin enerjiyê derxin, lê ev dereweke mezin e û pêwîstiya Tirkiyê bi enerjiya Mûnzûrê tune. Armanc tenê belavkirina Dêrsimê ye." Kahraman got wan ji bilî çalakiyên kolanan gelek çalakiyên cuda plankirine û bi pispor û huqûknasan re dixwezin li Berlînê raya giştî sazkin.

Li Hewlêrê otombîla bê benzîn û generatorê elektrîkê ava kirin

# Bi ba, av û tîrêjên rojê kar dikin

Soran Behaedîn Hewlêr

Du ciwanên Hewlêrê piştî ku generator û otombîlek ava kirin, ku generator bi peydana piskilêt kar dikir û otombîl jî xwe bi xwe şarz dikir û dimeşiya, niha dibêjin eger hikûmet alîkariya wan bike, ew dikarin şirketa çêkirina otombîlan û generatorên elektrîkê ava bikin ku bi ba, av û tîşkên rojê kar bikin.

Umer Cemal Ehmed (17), Umer Hikmet Şemsedîn ku bi salekê ji Umerê hevalê xwe biçûktir e, pêşî li Bexda û Xaneqîn diman, lê ev şeş sal in hatine Hewlêrê û li dibistanekî Erebî di qonaxa pêncan a zanistî de dixwînin.

Umer Cemal xwediyê hizra çêkirina generator bû û Umer ê din jî alîkariya wî kir. Umer Cemal got: "berî salekê me hesinên pisiklêtekê anîn, me generator li ser bicih kir, mirov dikare di nav demjimêrekê de 4 ampêrên elektrîkê jê werbigre, çiqasî zêdetir peydanê pê bike, ewqasî zêdetir elektrîkê dide."

Umer Cemal herdem xeyal kiriye ku generatorekê çêbike ku zêde mesrefa wê nebe û xwezayê nelewitîne: "deng û dûmana wê nîne, xerciya wê jî tune, hem elektrîk û hem jî werziş e." Navborî diyar kir ku pêwîstiya her generatorekê bi 200-300 Dolaran heye, li gor zêdebûna ampêran, mesrefa wê zêdetir dibe.



Umer Hikmet: Me otombîlek ava kir ku xwe bi xwe şarz dikir

Çêkirina vê generatorê sê rojan dirêj kir, lê ji ber li ser deyndar bûne, firotin. Piştî sê hefteyan ji çêkirina generatorê, herdu Umer'an dest bi çêkirina otombîleke ku li ser elektrîkê kar dike, kirin. Umer Cemal amaje da ku wan xwestin otombîlekê çêbikin ku mesrefa wê nebe û xwe bi xwe şarz bike: "ji cem hesinkarekî min parçeyên hesin bi hev ve kirin, min tenê motorek bi 200 Dolaran kirî ku li kêlgeha teyrikan tê bikaranîn, parçeyên din me bi xwe ava kir, me parçeyên pisikilêt, motor û otombîlan bikar aniye. Me berevajiyê elektîrkê jê re danî ku karê wê guherandina enerjiya bataryê ye bo elektrîkê, 6 ampêr dida. Me 800 dolar li ser xerc kirin, di 3 hefteyan de bidawî bû."

Ev otombîl di demjimêrekê de 30 km'an dimeş e û benzînê naxwaze. Umer Hikmet da zanîn ku mirov dikare otombîlê qet nesekinîne ji ber xwe bi xwe şarz dike û got: "ev otombîlê bêdeng û bêdûman bû, xweza gemarî nedikir, kesekî hildigrt, lê ji ber deynan me ew jî firot."

Herdu xortên navborî ji bo çêkirina otombîlê sûdê ji dîzaynên internêtê werdigirin. Umer Hikmet tekez kir ku ger alîkariya wan bê kirin, wek mînak eger 800-1000 Dolaran bidin wan, ew dikarin otombîlekê cêbikin ku bi benzînê kar bike û mesrefa wê jî nebe, bi kontrol kar bike, dikare bi lezgîniya 160 kîlometran here: "tenê em ê makîneyê bikirin, ger amûrên me hebûna me dikarî em makînê jî ava bikin û eger alîkariya me bê kirin em dikarin şirketeke çêkirina otombîlan vekin."

Ew soza wê yekê didin ku eger hikûmet alîkariya wan bike, ewê du generatorên elektrîkê ava bikin ku yek bi avê kar dike û yek jî bi bayê, her yek jî 30-40 ampêrên elektrîkê berhem tîne û 200-250 Dolaran dixwaze: "Em ê wiha bikin ku li malan jî kar bike, ger av jî nebû, bi gazê kar bike."

Ji bilî bavê wan, mamosteyekî dibistanê jî alîkariya herdu Umeran dike. Umer Cemal dibêje: "em dikarin bi av, tîrêjên rojê û bayê têrî hemû Hewlêrê generatoran ava bikin bêyî ku jîngehê bilewitînin, xerciya wan jî kêm e û dengê wan jî tune. Em herwiha dikarin otombîlê jî çêkin ku bi av, ba û tîrêjên rojê kar bike."

## Slovenya dixwaze enerjiya Kurdistanê biparêze



Kurdistanî pênc caran ji Ewrûpiyan zêdetir elektrîkê bikar tînin

**Hewlêr (Rûdaw) –** Rayedarên şirketeke Slovenî, xelkê Kurdistanê û karbidestên Hikûmeta Herêma Kurdistanê ji bikaranîna enerjiyê hişyar dikin û dibêjin ku ger sîstemek ji bo parastina enerjiyê ava nekin, di 5 salên dahatû de elektrîk dibe pirsgirêka herî mezin a Kurdistanê. Franz Pleberşîk ku xwediyê şirketa Mik Celje ya Slovênî di wê baweriyê ku pirsgirêka herî mezin a xelkê Îraq û Kurdistanê enerjiya elektrîkê ye: "ji ber li vir sîstemek ji bo parastina enerjiyê nîne."

Grûpa Franz Pleberşîk ji 4 şirketan pêk tê Mik Celje, Roltek, Trimo û Primorje bi rêya navenda karê Slovenî, bi hevkariya grûpa Sênk hatine Kurdistanê. Ev çar şirket bi navê grûpekê ji şirketên Slovenî li Hewlêrê beşdarî pêşangeha dawî ya Îraq Project a 2010'an a navnetewî bû. Her çiqasî her şirketek ji van di warekî de kar dike, lê di dawî de armanca wan yek e û ev jî parastina enerjiyê ye, niha dixwaze teknolojiya parastina enerjiyê bîne Herêma Kurdistanê.

Ev grûp ku yekem grûpa şirketên Slovenî ye tê Herêma Kurdistanê wek Franz behs kir, ligel gelek aliyên hikûmetê civiyane û behsa sîstema xwe kirine, ku ji bilî avakirina rê û otobanan, karê bînasazî dikin û di vî karî de sîstemekê bikartînin ku enerjiyeke kêm li avahiyan vala here.

Bi baweriya Pleberşîk, pêwîstiya Kurdistanê bi peyrewkirina vê sîstemê heye, ji ber roj bi roj vedije û bê navber projeyên nû tên kirin: "Pêdiviya van projeyan bi enerjiyeke zêde heye. Ger Kurdistan bi vî awayê niha berfireh bibe, di 5 salên bê de pêwîstiya wê bi zêdeyî ji sedî 60'ê enerjiya niha dibe, yanî ger niha hezar Mega Wattên elektrîkê bikar tînin, wê demê wê pêdiviya Kurdistanê bi 1600 MW çê bide."

### Ji sedî 87'ê enerjiyê vedigerînin

Sîstema ku Pleberşîk behs dike di bînasaziyê de bikar tê û çend taybetiyên maddeyên ku bikar tînin hene: "Dîwar bi maddeyekê ava dikin ku bi ti hawî agir nagire, deng nayê hundir, gulle tê de derbas nabin, sarî û germiyê diparêze, herwiha camê pencereyan teknolojiyek tê de hatiye bikaranîn ku nahêle germî û sarî herin û bên û hewaya odê jî diguherîne."

Navborî amaje da di her avahiyekê de dikarin ji sedî 87'ê enerjiyê vegerînin: "Wek mînak ger avahiyeke asayî ji bo germkirin û sarkirinê pêdivî bi 10 ampêrên elektrîkê hebe, em enerjiya pêwîst a vê avahiyê heta 1.3 ampêran kêm dikin. Wek mînak germ bû, em maddeyên wiha bikartînin ku germî ji bo demeke dûr û dirêj bimîne, bo sarkirinê jî bi heman awayî."

Derbarê xerciyên karê wan jî, Franz Pleberşîk wiha axivî: "xerciya me ne cuda ye ji xerciya avahiyeke ku bi maddeyên klasîk tê lêkirine." Lê navborî diyar kir ku ew di warê demê de lezgîntir in: "Me ji bo avahiya xwendingeheke Kurdistanê nirxandinek kir, em dikarin avahiya xwendingehekê di nav 90 rojan de bidin destê Wezareta Perwerdê."

Derheqê hilbijartina Kurdistanê ji bo kar û projeyên wan, Franz Pleberşîk daxuyand ku ew endamê yaneya Roter e, berê jî serokê yanê bû, ku milyon û 500 hezar endamên wê hene, di vê yanê de Kurdek bi navê Dr. Bextiyar Caf nas kiriye. Dema navborî zaniye ew yek ji sermayedarên Slovenya ye, behsa aramî û ewlekariya Kurdistanê û yasa hilberîna Kurdistanê jê re kiriye û jê xwestiye here Kurdistanê hilberînê bike. Franz Pleberşîk ji bo vî karî pêwîstiya wî bi kesekî bû li Kurdistanê kar bike. Dr. Bextiyar gruba Sênk, ku şirketeke lokal e, pê dide naskirin.

Pleberşîk pir kêfxweş e ku Herêma Kurdistanê ji bo karên xwe hilbijartiye û di vî warî de dibêje: "gelê me û gelê Kurd di gelek waran de wekhev in, em di sala 1991'an de ji Yugoslavya cuda bûn û me serxwebûna xwe ragehand. Bi heman awayî Kurdan jî di sala 1991'an de li dijî Saddam serî hildan û bûn xwedî parlamen û hikûmeta xwe ya taybet, wekî din jî di warê çandî de ji hevdu nêzîk in."

Pleberşîk ku yek ji sermayedaren Slovenya ye, dide zanîn ku li Kurdistanê enerjiyeke zêde ji bo germkirin û sarkirinê vala diçe, navborî Slovenya ku hejmara xelkê wê 2 milyon kes in û Herêma Kurdistanê dide berhev: "Tevahiya Slovenya bi qasî Kurdistanê elektrîkê bikartîne, lê şirketên me yên pir mezin hene, tevahiya xelkê Slovenya bi qasî ji sedî 5'ê elektrîka Kurdistanê li ser sarkirin û germkirinê bikar tîne."

Şirketa Franz Pleberşîk ku yeke ji 91 şirketên mezin ên cîhanê xwediyê bawernameya 'Dezgeha Ewrûpî bo Îdarekirina Qalîteyê'. Ev dezgeh bawernamê dide şirketên ku karê xwe pêşdixin. Niha Mik Celje li Ewrûpa di warê parastina enerjiyê de di pileya 'a' de ye.

# Kongreya PENa Mîyanneteweyî Tokyo de virazîya


Bêrîvan Doskî û Abdulla Hîcab kongreya 76. ya PENa Mîyanneteweyî de

**Tokyo (Rûdaw) -** Kongreya 76. ya rêxistina nuştoxanê cîhanî PENa Mîyanneteweyî emser paytextê Japonya Tokyo de virazîya û Pena Kurd zî bi di endaman beşdar bîye.

Kongreya 76. ya PENa Mîyanneteweyî rojanê 25-30 êlule 2010 de paytextê Japonya Tokyo de virazîya. Nameyê PENa Kurd ser o birêz Bêrîvan Doskî û Abdulla Hîcab beşdar bîy.

Kongreya PENa Mîyanneteweyî de, verî, komîteyê cîya-cîyayî yê sey Komîteya Cinîyan, Komîteya Aştîye, Komîteya Nuştoxanê ke Zindanan de yê, Komîteya Ziwan û Tercumeyî kongreya xo virazenê. Dima kongreya îdareyê PENa Mîyanneteweyî virazîyêna.

Kongre de PENê miletan derheqê xebata PENa Mîyanneteweyî de pêşnîyazan pêşkêş kenê. Goreyê malumatanê ke Abdulla Hîcab dano, endamanê PENa Kurd emser panc pêşnîyazî pêşkêşê PENa Mîyanneteweyî kerdê û her panc zî hetê delegeyanê PENa Mîyanneteweyî ra qebul bîyê.

Komîteyê PENa Mîyanneteweyî, pêşnîyazê ke kogre de ameyê qebul kerdene ser o munaqeşe kenê û her komîte warê xo de dest bi xebate kena. Kongreya dima ra de zî netîceyê xebata xo sey raporî pêşkêşê îdareyê PENa Mîyanneteweyî kenê.

PENa Mîyanneteweyî rêxistinêka sivîl a, hêzê aye yê tetbîqkerdişê mueyîdeyan çin o la hetê psîkolojîkî ra şêna hetanî dereceyêk tesîr ro hukmatan yan zî ro rayaumûmî ya cîhanî bikero.

Kongreya 76. ya PENa Mîyanneteweyî de PENa Japonya ra Takeaki Hori sey sekreterê PENa Mîyanneteweyî û PENa Norvecî ra Eugene Schoulgin zî sey cagirewtoxê ey, PENa Amerîka ra Eric Lax zî sey hesabdarî û 4 kesê bînî zî sey endamê komîteya îdarekerdoxe amey weçînayene.

**Pêşnîyazê PENa Kurd:**

*•Hetkarîya PENa Mîyanneteweyî seba wedarîyayîşê zordestî û vindarnayîşê pêrodayîşanê ke Kurdîstan de benê.*

*• Hetkarîya PENa Mîyanneteweyî seba hetê dewletanê zordestan ra qebulkerdişê estene û heme heqanê miletê kurdî.*

*• Piştgirîya PENa Mîyanneteweyî seba dîyalogê çarekerdişê meseleya kurdan.*

*• Hetkarîya PENa Mîyanneteweyî seba ke meseleya kurdan hetê sîyasî ra çare bibo.*

*• Hetkarîya PENa Mîyanneteweyî seba ke Kurdîstan de cematêko medenî bêro meydan, heme heqê merdiman bêrê pawitene û qanûnê gerdûnî bêrê tetbîq kerdene.*



## Weşanxaneyê Dîyarbekirî beşdarê TUYAPî benê

**Dîyarbekir (Rûdaw) -** Qismêk weşanxaneyê kurdan ke Dîyarbekir de yê, xo amade kenê ke beşdarê fuara kitaban ya TUYAPî bibê.

Fuara kitaban ya TUYAPî ke Îstanbul de virazîyena, emser fuara 29. roja 30 oktobre de dest pêkena hetanî roja 7ê teşrîne dewam kena.

Dîyarbekir ra weşanxaneyê sey Lîs, Ava û Aramî hetanî nika seba beşdarîya fuara 29. ya TUYAPî muracat kerdo. La lîsteya weşanxaneyanê ke do beşdarê fuare bibê 15ê oktobre ra pey do îlan bibo.

Goreyê malumatê ke îdarekerdoxanê fuara TUYAPî da, hetanî nika 500 ra vêşêr weşanxaneyan muracat kerdo ke beşdarê fuare bibê. La hîna tu weşanxaneyêkê kurdan reyde peymane nêameya îmza kerdene. La rojanê vernîya ma de do bellî bibo ke kamcîn weşanxaneyî beşdarê fuare benê.

# Beledîya Mêrdînî Îtalya ra 15 herî erînay

**Mêrdîn (Rûdaw) -** Beledîya Mêrdînî seba ke kuçeyanê tengan yê şaristanî ra çop bikirişnê, Îtalya ra 15 tene herî erînay. Mîyanê di hewteyanê vera ma de do herî biresê bi Mêrdîn.

Serekê beledîya Mêrdînî Mehemed Beşîr Ayanoglu kombîyayîşê çapemenîye de da zanayene ke 48 heranê beledîye yê kadroyînan ra ke kuçeyanê teng û bipalikan ra çop arêdanê 10 hebî seba ke pîr bîyê yan zî sedemanê bînan ra ameyê teqawit kerdene.


Mêrdîn de bê heran heyat nêbeno

Serekê beledîye dima dewam kerd û va, serrêk ra zêde yo ke ma heran dima gêrenê. Gama ke panc aşmî verê cû serbalyozê Îtalya yê Anqara Carlo Marsili ke ame Mêrdîn zîyaret kerd, ma ey ra herî teleb kerdîy. Axir ey ma rê Îtalya de herî peyda kerdîy. Mîyanê di hewteyanê vernîya ma de do 15 herî biresê bi Mêrdîn. Badê ke hewteyêk perwerde bibê, ma do înan karê arêdayîşê çopî de bidin şuxulnayîş.

Serekê beledîya Mêrdînî Mehemed Beşîr Ayanogluyî va, “Şaristanê ma yê tarîxî de 562 kuçeyê qîyame û tengekê bipalikî estê ke wesaîtî qet nêşênê bikewê nê kuçeyan. Mêrdîn de çop ancax bi heran bêro arêdayene. Karkerê beledîye serê sibayênan rew bi heran nê kuçeyanê ra çop arêdanê. Fîrmayêka şaristanê Orduyî ke Îtalya reyde karê îxracatî kena, ma aye de têkilî rona. Na fîrma do 15 heranê ma bêpere bêresno bi Mêrdîn. Derheqê ardişê heran de embazê ma ha xebitênê. Mîyanê 15 rojan de do 15 herî Îtalya ra bêrê ardene. Badê ke ma hewteyêk înan perwerde bikerin, ma do kadro bidin înan û sey heranê ma yê bînan do ê zî dest bi karê arêdayîşê çopî bikerê. Herê ke beledîya ma de şuxulênê, ma dîqet kenê ke herê nêrî û hêzdarî bê.”

Şarê Mêrdînî zî reaksîyon nîşan da ke çira beledîye werişta Îtalya ra heran dana ardene. Şar vano, gelek herî derûdorê Mêrdînî de estê. Herê Mêrdînî musayeyê kuçeyanê tengan û palikanê nêrdewanan ê. Nika nêno zanayene ke gelo herê Îtalya do bişênê palikanê nêrdewanan ra şirê dîyar û bêrê war yan ney? Hetanî ke herî nêrê û kar de nêrê ceribnayene, kes nêşêno vajo ke beledîye şaşî kerda yan karêko hol kerdo.

# Kurdîstan de vewra verêne varaye

**Bazîd (Rûdaw) -** Emser Kurdîstan de vewre rew varaye. Roja 05.10.2010 de vewra verêne ya emserî koyo tewr berz yê Kurdîstanî ser o, koyê Agirî ro varaye.

Hewa nişka ra qasê 8 dereceyî bî serd û vewra tewr verêne koyê Agirî ro varaye. Şarê Bazîdî yew roje de kincê xo yê hamnanî xo ra kerdîy û yê zimistanî dolaban ra vetîy, xo ra day. Şar vano, serra ke vewre rew bivaro zimistan xidar vîyareno. Coka şar wazeno ke rojêk aver gazê tebîî biancîyo keyeyanê înan.


Emser vewre rew varaye koyê Agirî ser

Heto bîn ra, pisporê texmînkerdişê rewşa hewayî zî vanê, badê germê zaf zêdeyî yê emserî, do zimistanê emserî zî zaf xidar bo.

Goreyê xeberanê medyaya Înternetî yê Rûsya RT, pisporanê polonyayîjan tesbît kerdo ke herkîyayîşê awa germine Gulf Stream ke Kendawê Meksîka ra hetanî Okyanusê Atlasî derg beno, nê çend serranê peyênan de nême ra nême kêmîyayo, coka na awa germine nêşêna vera vayê cemserê vakurî (kuzey kutbu) de xo ver o bido. Pisporî vanê, nê semedî ra Ewropa de zimistan do zaf xidar bivîyaro.

Pisporî vanê, eke herkîyayîşê awa germine Gulf Streamî bin ra vindero, beno ke Ewropa de serdemêko newe yê qeşayî (buzul çağı) dest pêbikero.

Vadim Zavodçenko ke pisporanê namdaran yê merkezê texmînkerdişê rewşa hewayî yê Rûsya Fobosî ra yew o, vano rewşa hewayî ya aşmêkê ma ra ver se ra hewtay rast texmîn bena, texmînê zimistanê serdî zî rast o.

## Kurdistaniyên Sûriyê

# Baştir dibe Kurdên Sûriyê xwe bikin Filistînî



David Romano

Divê bi piranî ji wêya dûr bikevin ku grûpên tên çewisandin bidin ber hev, ne mebesta mine jî bextreşiyên ku hatine serê Filistîniyan kêm bikim, lê carna ne wekhevî û dûrûtî ewqasî eşkere ye ku divê tiştek li ser bê nivîsandin.

Kurdên Sûriyê nêzîkî ji sedî 10-15'î rûniştvanên Sûriyê pêk tînin, ji bilî Ereban ew kêmneteweya herî mezin in li Sûriyê. Sala 1962'an Hikûmeta Sûriyê nasnameya dewletê careke din da nasandin û Sûriye weke 'komareke Erebî' ragihand. Di heman salê de Sûriyê biryara jimare 93 derxist ji bo sazkirina serjimêriyeke taybet li navçeya Cezîrê ku piraniya rûniştvanên wê Kurd in. Ev serjimêrî bû sedema ku zêdeyî 120 hezar Kurdên Sûriyê bibin 'biyanî' û mafê hevwelatîbûn û nasnameyê ji wan bê standin. Bêyî hebûna nasname û garantiyeke fermî, ev kes ji mafê xwedîbûn, damezrandina li fermangehên hikûmetê, xizmetkariya tendirustî û yên din jî bêbar dibin, herwiha mafê wan kesan tune ku serdana derveyî welat bikin yan hevjîniyê tomar bikin û zarokên xwe bişînin xwendingehên dewletê.

Filistîniyên ku hevwelatiyê Îsrailê ne û nêzîka ji sedî 22'ê rûniştvanên Îsrailê pêk tîn in, ev hemû mafên wan hene. Herwiha Filistîniyên ku li Kenarê Rojava dijîn û hê li jêr dagîrkeriya Îsrailê ne, piraniya mafên xwe wergirtine, ji bilî pirsgirêka xakê ku ji aliyê Îsrailiyên ji derve hatî hatiye kontirolkirin û herwiha hinek pirsgirêkên sefer a derveyî welat. Herwiha mafê hemû Filistîniyan heye bi dilê xwe zimanê Erebî 'ku yek ji zimanên fermî yên Îsrailê ye' bikar bînin di axaftin, xwendin, çapkirin û karê îdarî, siyasî û hemû festîfaleke çandî ku bixwazin saz bikin. Kurdên Sûriyê-yên bi nasname û yên bênasname- ji derfeteke wiha bêbeş in û ger yek ji wan daxwaza mafê xwendin û çapkirinê bi zimanê Kurdî bike, rasterast serdanek ji bo zindaneke Sûriyê wê çaverêyî wî dike.

Lê diyar e her roj hikûmeta Sûriyê û medya dewletê nîgeraniya xwe li himber rewşa Filistîniyan nîşan didin. Ti pirsgirêk li vir nîne, lê Kurdên Sûriyê? Gava berî demekê serkirdên Kurdên Sûriyê derbarê mirovên xwe yên 'bênasname' axivîn 'ku niha hejmara wan gihaye 250-300 hezar kesan', ew rastî îşkence û girtinê hatin. Ti dahatûya van 250-300 hezar Kurdan tune û hatine neçarkirin ku di civakeke sînordarkirî de bijîn.

Ji sala 2005'an ve hişkesaliyê berê xwe daye navçeyên Kurdî û rewşa wan careke din têk daye.

Ji ber çi nasname ji ewqas Kurdan hat standin? Dema ku ji bo cara yekem ev siyaset hat meşandin bi taybet piştî serjimêriya taybet a 1962'an, diyar bû ku karbidestên Sûriyê dixwestin Kurdan agahdar bikin ku heman karê Kurdên Îraqê nekin. Herwiha wê demê ji ber ku rêjîmê milk, kar, xwendingeh û nexweşxaneyên ji Kurdan standin dan Erebên Sûriyê, loma wê ev Ereb jî zêdetir piştevaniya Hikûmeta Sûriyê bikin.

Lê ev jî me berbi pirseke din dajo: Ji ber çi Şam di binpêkirina mafên Kurdan de berdewame, ew jî heman ew maf in ku Filistîniyan jî hene? Gelo hikûmeta Sûriyê qet hest bi şermezariyê nake, dema daxwaza mafên Filistîniyan dike û di heman demê de jî nêzîkî 300 hezar Kurdên Sûriyê bê sedem, di rewşeke ne baş de dijîn? Proses ewqasî dirêj nabe ger hebûna fermî ya 300 hezar kesan li wan bê vegerandin.

Di bersivdana vê pirsê de, pirsgirêka min heye, mîna gelek pisporên siyasî yên din jî ku min ev pirsiyar ji wan jî kir. Li gor min kilîta bersivdana vê pirsê vedigere salên 2004 û 2005'an dema Şamê hest bi lawaziyê dikir. Guşarên navnetewî Sûriye neçar kir ku piştî terorkirina Refîq Herîrî ew ji Lubnanê derkeve. Pişt re Amerîka ji Îraqa cîran, gef li Sûriyê xwarin û ligel vêya jî nîgeraniya Kurdan li bajarê Qamişlo û navçeyên din hate pêş û bû xwepêşandaneke girseyî. Ji nişkave berpirsên Sûriyê anîn ziman ku wê mafên zêdetir bidin Kurdan û behsa redkirina vê qanunê kirin ku gelek kes ji nasnameya Sûriyê bêbeş kirine, lê heta 2007'an jî ku ev guşar û fişarên han hatin aramkirin, me peyvek jî li ser başkirina rewşa Kurdên Sûriyê nebihîst û Şameke moral bilind vegeriya holê û rewşa kevin çespand.

Bi giştî serkirdayetiya Şamê ewqasî giringiyê nade wêya ku polîtîka xwe biguherîne, lê hê xerabtir e û dixuye ku civaka navnetewî jî ewqasî guhê xwe nede vê mijarê.

Dibe ku guşarên navnetewî nerîna Şamê li ser vê mijarê biguhere, lê pir kêm navê Kurdên jibîrkirî yên Sûriyê tê bihîstin, lê di 9'ê Îlona borî de tiştekî bê hempa qewimî. Nûnerê taybet ê NY, Oliver De Sautér, bi awayekî tund Sûriyê rexne kir û di rapora xwe de nivîsand: "bêbeşkirina Kurdan ji nasnameyê, çendîn asteng li pêşiya van Kurdan çê kirine ji bo bidestxistina mafên xwe bi taybetî di warên aborî, civakî û çandî de. Li gor nerîna nûnerê taybet û li gor yasa navnetewî tiştekî ji nasnameya tevahî kêmtir nayê qebûlkirin. Mafê her mirovekî heye ku xwedî nasname be û bi awayekî jixweber nasnameya wî jê neyê standin."

Niha ger tenê ew kesên ku daxwaza mafê Filistîniyan dikin, haya wan ji berjewendiyên Kurdên Sûriyê bûna, wê rewş biguheriya. Rojnamevanê Brîtanî Robert Fisk vê dawiyê hevdîtinek ligel biraziyê Hafiz Esad, Rêbal Esad, sakir, lê pirsek jî derbarê Kurdên Sûriyê de jê nekir. Lîjneya nû ya mafên mirovan li NY heta niha 33 biryar dijî Îsrail û 6'ên din jî dijî welatên din ên cîhanê derxistine, lê ti biryar dijî Sûriyê dernexistiye. Mirovên hersgirtî li seranserê cîhana Îslamê hene ku qet navê Kurdên Sûriyê jî ne bihîstibin.

Dibe baştir be ger Kurdên Sûriyê xwe weke Filistînî bidin naskirin 'ji xwe ew jî bê welat in, ne wiha?' Û dibe bi vî awayî hinek baldarî û hevalan ji xwe re qezenc bikin.

# Şerê dijî Kurd yan dijî PKK'ê?



Wladimir Van Welgenburg

Divê rojnamevan hişyarî wê yekê bin dema hin partiyên siyasî û tevgerên çekdarî dibêjin em nûnerên hemû gel in. Qet nabe rojnamevan vê yekê rast bibîn e.

Berî çend mehan danûstaneke min ligel rêvebirê nivîsîna Rûdawê çêbû, derbarê wê yekê ka em binivîsim; Tirkiye tometbare bi bikaranîna çekên kîmyayî 'dijî PKK' yan 'dijî Kurdan'. Bi baweriya min rasttire em bibêjin 'dijî PKK', ji ber ku hêşta diyar nîne ka hejmara Kurdan li cîhanê çende, herwiha em nizanin ka şêwazê bikaranîna wan hevokan li seranserî dinyayê tesîrê li qeyranên mezin dike yan na.

Ji bo mînak li Tirkiyê zêde Kurd hene ku dengê xwe nadin partiyeke Kurdî, lê dengê wan ji partiyeke Îslamî re diçe. Li Kurdistan a Îraqê jî hemû Kurd ne alîgirên PDK û YNK'ê ne. Dîsan li Îranê jî paşxane û berjewendiyên cudayên yên Kurdên wê derê hene. Pirtûkeke nû ya rojnamevanekî Holandî behsa hebûna heman pisrgirêkê li nav Kerkûkê jî dike. Pirtûka wî ji sê beşan pêk tê ku beşa yekemîn derbarê Turkmenan e, ya duyemîn jî derbarê Ereban û ya sêyemîn jî derbarê Kurdan e. Bi gotina wî rojnamevanî; Kurd li Kerkûkê weke Seddam tevdigerin, lê di dema nasandina pirtûka wî de, hevalekî min axaftina wî rojnamevanî rastkir û jê re got: Kesên ku li Kerkûkê karên wiha dikin, PDK û YNK ne, lê ne hemû gelê Kurd e.

Herwiha hemû Turkmenên Kerkûkê jî ne alîgirên Eniya Turkmenî ne, hemû Ereb jî ne digel Elawî ne û Xiristiyan jî ne tenê endamên yek partiyê ne. Di heman demê hemû Şîiyên Îraqê jî ne bi Îranê re ne û Şîitiyê nadin pêş her tiştî, lê mirov dibîne ku gelek rojnamevanên Rojavayî şaşiyên wiha dikin dema di rapor û nûçeyên xwe de behsa "Şîi" û "Kurd" û "Ereb" û ... htd dikin, ku di rastî de ne wihaye, ew behsa grûpeke Şîi yan Kurdan dikin.

Li Holanda ku hejmara rûniştvanên wê nêzîkî 16 milyon mirovan e, qet partiyeke siyasî nawêre xwe weke nûnerê hemû Holandiyan binasîn e. Ji bo mînak hikûmeta niha ji koma 9.5 dengderan, piştevaniya 5 milyon derngerên bidest xistiye, lê her yek ji wan partiyên ku hikûmet pêkanîne, nêzêkî yek milyon heta du milyon dengan bi dest xistine, wate ew tenê nûnertiya wê grûpa biçûk a nav civaka Holandî dikin.

Loma ez di wê bawerê de me ku divê rojnamevan di vê mijarê de hişyar bin. Dema partiyên siyasî yan tevgerên çekdarî dibêjin em nûnerên hemû gel in, qet nabe ew vê yekê rast bibînin. Herwiha grûpên Îslamî yên radekal jî, wek rêxistina Al-Qaide, nûnertiya hemû Misilmanan nake û peywendiya bêtiriya Misilmanan bi kiryarên xwekujî yên wê rêxistinê ve qet tune ye, loma şaşiyeke mezin e eger bê gotin ku "Misilman mijûlî êrişkirina ser Amerîkayê ne."

Dibe ku ev gotina dawî ji bo rojnamevanên Kurd jî, berçav ronkirineke baş be: Di bikaranîna hevokan de berdewam li xwe hişyar bin.



## Merkel sipasiyek taybet pêşkeşî Ozil kir

*Piştî serketina Tîma Netewî ya Almanya li hemberî Tirkiyê bi 3-0 ku şemiya borî hat lîstin, Serokwezîra Almanya nema dikarî li ser kursiyê xwe bimîne û berê xwe da kabînên lîstikvanan ku dixwestin piştî lîstikê xwe bişon û ew pîroz kirin. Yek ji wan kesên ku Merkel pîroziyek taybet pêşkeşî wî kir, Mesût Ozil bû. Ozil ku di maçê de gola 2. avêt, lê kêfxweşiya xwe zêde neda derve. Di çapemeniya Tirk de derbarê Ozil de gotûbêjên cuda hatin kirin ku hineka wî rexne dikir ku cima tevlî Tîma Netewî ya Tirk nebûye û gol avêtiya qeleya Tirkan hinek jî ji Tirkbûna wî şa dibûn. Rojnameya Alman Bild jî bi Ozil re hevpeyvîn çêkir û gotinên wî yên wek, "Ez bi gola xwe şa bûm û min di 90 deqeyê lîstikê de ti caran guh neda fikandin û reak-*


Wêne: dpa

# "Kurdistan dikare mêvandariya şampiyonên navnetewî bike"



**Îhsan Tahir** Hewlêr

Roja 1'ê Cotmeh a 2010'an Hewlêra paytexta Kurdistanê, mêvandariya 23. şampiyona Bilindkirina Giraniyê (Halter) ya Ereb kir. Serokê Yekîtiya Bilindkirina Giraniya Ereban, Îbrahîm Welîd Ebû Eşwan daxuyand ku wan ji niha de OK daye Kurdistanê ku ew bi mêvandariya çalakiyên navnetewî bikin."

Di organîzsyona helterê ku hefta borî li ser her sê astên tazepêgehiştî, ciwan û pêşkeftiyan ji bo kur û keçan hat sazkirin de 11 welatên Ereb tê de beşdar bûn. Organîzekirina vê şampiyonê bûye cihê dilxweşiya berpirsên Yekîtiya Bilindkirina Giraniyê ya Ereban û beşdaran.

Serokê Yekîtiya Bilindkirina Giraniya Ereban, Îbrahîm Welîd Ebû Eşwan, ji bo Rûdawê got ku wan bawer nedikir wê amadekariyên vê şampiyonê li Kurdistanê bi vî awayî bin, "Em pir sipasî organîzekarên wê dikin, wan îsbatkir ku werzişvan in. Me ji niha ve OK daye Kurdistanê ku ew dikarin bi şêweyê herî baş mêvandariya çalakiyên navnetewî bikin."

Sekreterê Giştî yê Yekîtiya Bilindkirina Giraniyan yê Ereb, Cemîl Henna jî daxuyand ku daxwaza sazkirina vê çalakiyê li Îraqê, ji wan re hatiye, lê wan ji ber rewşa ne aram a Îraqê ev yek ret kirine. "Lê dema ku ji me re hat ronkirin ku ewê mêvandarî li Kurdistanê be û herêmeke zêde aram û hêmin e, me qebûl kir. Niha jî ku ez li Kurdistanê me, ez daxwazê ji Yekîtiya Bilindkirina Giraniyan ya Îraqê dikim ku daxwaznameyekê bidin Yekîtiya Bilindkirina Giraniyan ya navnetewî ji bo ku di sala 2014'an de şampiyona navnetwî ya tazepêgehiştî li vir bê encam dayîn, ji ber Kurdistan hêjayî wê yekê ye."

Serokê Lîjneya Olîmpîk a Îraqê, Read Hemûdî jî diyarkir ku ev ne cara yekemîn e Kurdistan mêvandariya şampiyonên navnetewî dike, "Ev jî belgeya wê yekê ye ku Kurdistan û Îraq dikarin mêvandariya her pêşbirke û şampiyoneke navnetewî bikin, wate em ji bo hembêzkirina van çalakiyan amade ne."

Rahênerê Tîpa Keçên Îmarat, Necwan Ehmed El-Zewawî jî eşkere kir ku wî saziyên sporê yên li vê herêmê ecibandine, "Di hemû waran de pêngavên bi lez diavêjin. Ez beşdarî gelek çalakiyên welatên Asyayê bûme û ez bêyî mubalexe dibêjim ku di warê organîzekirina şampiyonên werzişî de, Kurdistan weke Çîn û Koreya Başûr e."

Parêzgarê Hewlêrê, Newzad Hadî jî mêvandarîkirin û piştevanîkirina van şampiyonên werzişî bi vî awayê serkeftî ji bo Kurdistanê weke destkeftekî mezin dibîne, "Loma em kêfxweş in û em ê berdewam piştevaniya wan destkeftiyan bikin, ji xwe ev di plan û siyaseta hikûmetê de heye û em jê re amadene."

Lîstikvanê Tîma Zaxo, Herdî Siyamend:

# Tîma Hewlêrê hurmeta min negirt



Lîstikvanê Tîma Zaxo, Herdî Siyamend, got ku wî zêde hezdikir ku ji bo tîma Hewlêrê bilêz e, lê ji ber ku berpirsekî wê tîmê sivkatî bi lîstikvanên Kurd kiriye û gotiye "ew ne hêjayî girêbestên giran buhane." Loma wî biryar da biçe nav Tîma Zaxo.

Herdî taybet ji bo Rûdawê got ku wî daxwaz ji Tîma Hewlêrê kiribû buhayê girêbesta wî zêde bikin, ji ber ku ew di wê bawerê de ye ku ew hêjayî bêtirê ye, lê Endamekî Îdareya Tîma Hewlêrê hurmeta wî negirt û bi axaftineke hişk tesîr li derûna wî kir, loma wî jî biryar da biçe nav rêzên Tîma Zaxo û got "wî berpirsyarê Tîma Zaxo got; 'lîstikvanê Kurd ne hêjayî wê yekê ye ku diravekî zêdetir ji 40 milyon Dînaran jê re bê dayîn'. Wê axaftinê gelek tesîr li min kir, ji ber ku wî bi navê Tîma Hewlêrê ew axaftin kir û bi baweriya min ew sivkatî kirine bi lîstikvanê Kurd, ji ber ku tiştekî me ji lîstikvanên Ereb kêmtir nîne, eger zêdetir nebe."

Herdî herwiha got "tevî vê yekê jî hurmet û viyana min ji bo Tîma Hewlêrê heye, min dixwest ez bi Tîma Hewlêrê re girêbestê îmze bikim, ji ber ku Hewlêr bajarê min e, lê çênebû û min hest kir ku rêz li min negirtine. Bi rastî ez naxwazim weke yedek li ser kursiyê rûnim, lê dixwazim berdewam bilîzim."

# Lîstikvanekî tîma DALKURD transferî Premier League a Brîtanî dibe


Simael Suvlevîc

**Stockholm (Rûdaw) -** Simael Suvlevîcê (15) ji tîma fûtbolê ya Kurdên Swêdê, (DALKURD) transferî lîga yekemîn a Brîtanyayê dibe. Weke ku serokê DALKURD'ê, Ramazan Kizil, ji Rûdawê re got, lîstkvanê wan ê ciwan Simael Savlevîcê, ku bi eslê xwe Bosniyakî ye bala tîma Brîtanyayî Stocke City kişandiyê û Stoke City serî li DALKURD'ê daye û ew dixwazin lîstikvanê pozisyona navîn, Simael Suvlevîc, transferî tîma xwe bikin. Weke ku Ramazan Kizil got, herî dereng piştî du mehan lîstikvanê wan wê transferî Brîtanyayê bibe. Simael Suvlevîc li DALKURD'ê tevî temenê xwe ye ciwan jî, di nav tîma yekem a mezin de dilîze. Derbarê pereyê transferê de jî Ramazan Kizil got ku hîn ew yek diyar nebûye, lê ji bo lîstikvanekî ciwan ew nikarin pereyekî mezin bixwazin, lê dema lîstikvanê wan li Brîtanyayê biserket û bikeve nav tîma 1. a Stokê City, ew ê pereyekî baş 'ku dibe ji milyonek Euro bêtir jî be' ji wê tîmê wergirin.

Tîma DALKURD di lîga 1'emîn a Swêdê de dilîze û ev çend sal in bi serketinên xwe bala Swêdê û gelek derdoran dikşîne ser xwe.

# "Ez bi metodeke taybet kar dikim"

Roja 18'ê Îlon a 2010'an, li Kolnê li festîfala salane ya kultura Kurdî bi beşdariya hejmareke zêde ya Kurdan hat lidarxistin. Ji stranbêjên beşdar, Hanî bi kirasekî şîn û rengên Kurdî, bala her kesî kişand. Rûdawê li wir ev hevpeyvîn ligel wê saz kir.

**Rûdaw: Di albuma te ya dawî de stranên zazakî, hewramî û soranî jî hene. Te bi mebest wiha kir an bi tesaduf bû?**



**Hanî:** Awaz bi xwe zaravê dabîn dike, dema ez awazê datînim, rîtma awazê zaravê dibîne. Piraniya karên min li ser tiştekî bûne, wek mînak li ser jinê. Min hewl da ji folklor heta muzîka modern jî li xwe bigre. Dikarim bêjim ev CD ji bo muzîka kurdî diyariyek bû, ji ber pir pê ve westiyam.

**Hinek tekstên te ji helbestên Hewramî hatine girtin, gelo tu pir didî dû helbestan?**

Erê, min ji helbestê dest pêkir û bi farsî dinivîsand, piştre bûm şêwekar û niha stranbêj. Dayika min Hewramî bû, loma baş ji helbestên wan fam dikim. Niha şêwekariyê jî dikim û dixwazim tabloyên xwe nîşan bidim, her çiqasî têr nakin ku pêşangehekê vekim û piraniya wan kevin in.

**Tu li Korek TV bi awayekî bûyî û niha bi cilên Kurdî û rengên kesk, sor û zer tê dîtin.**

Ez bi wê berhemê çûm Kurdistanê. Karê min pir bi dilê wan bû, lê gotin niha li Kurdistanê bazara tiştên nîştîmanî qediyaye, niha serdema karê eşq û evîndariyê ye, min got ez bikarim dilê xelkê Kurdistanê jî xweş bikim, lê ji aliyekî din em Kurd in û divê hizra parçeyên din ên Kurdistanê jî bikin.

**Ev karên te ligel Helkewt Zahir kirin, piraniya awazên wan 'Arabesk' bûn, gelo tu ji wî karî ne poşmanî?**

Na, Helkewt Zahir gelek awazên popê yên pir bi kalîte dan min, tenê awazeke erebî hebû kêfa min jê re nayê. Karê min li Kurdistanê kir tiştekî xweşik bû, lê ez dubare nakim. Ez bi bername û metodeke taybet kar dikim. Huner û muzîk harmonî ne û reng û bêhna her tiştekî heye.

**Lê dema tu hatî Ewrûpa giliyên te hebûn?**

Hinek rojnamevanan bi qest axaftinên min guherandibûn, dibe dixwazin kesayetiya hunermendan biherifînin. Dilgiran bûm dema çûm Korek TV, ji ber ji sedî 10'î ne weke wan soz dabûn min, bû.

**Projeya te ya dahatû çî ye?**

Ez ê li Silêmaniyê çend klîban çêkim û konserekê jî saz bikim, lê dema wê nehatiye diyarkirin.

**Hûn ji arîstokratên bajarê Sine ne, we li mal bi kurdî diaxivî?**

Erê em ji malbateke Sine ne û em herdem bi Kurdî axivîne, malbata me pir mezhebî bûn, lê wekî din komunîst jî di nav me de derketin. Bapîrê min Sedirûlîslam Muctehîdî bi dehan kitêb derbarê felsefeya Îslamê nivîsandine, lê Hanî jî di vê malbatê de hatiye perwerdekirin.

*Hevpeyvîn: Sale Kurde*

## "Segên Qesra Spî wefadar in"



Di navbera serokên Amerîka û segên wan de, wefadarî û dostaniyeke baş heye. Di Qesra Spî de xwedîkirin û dostaniya di navbera serok û seg de, tradîsyonek e.

Ew ji dema serok John Fitzgerald Kennedy ve heye. Serok her demê segê xwe bi xwe re biriye Qesra Spî û hevaltiyeke pir samîmî pê re kiriye. Gelek pispor dibêjin seg dostê herî nêzîk ê serok bû. Di dema hilbijartinên serokatiyê de bavê John Fitzgerald Kennedy, weke diyariya herî bi nirx, segek pêşkêşî wî kir.

Wêneyên gelekî balkêş ên serokê berê yê Amerîka, Bill Clinton, ligel segên wî hene. Hevaltiya G. W. Bush bi segê wî re nimûneyek e. Rojnameya Daily dinivisîne ku wî gelek caran segê xwe dibir protokolan jî. Serokê niha Barrack Obama her demê segê xwe nêzîkî xwe dîtiye û carekê jî di civîneke çapemeniyê de gotibû: "Divê em weke mirovan bi segan re bidin û bistînin, ji ber ku ew gelekî dilsoz û wefadar in."

Bêguman segên Kurdan jî gelekî wefdar in, lê weke ku li Amerîka qîmeta wan heye, li Kurdistanê qîmeta wan tune. Gelo wê rojek bê ku em jî weke miletên din bibînin ku serokê me tevî segên xwe derdikevin seyranê û bi xwe re digerînin!

## Jinên qels û mêrên qelew zêde qezenc dikin



Dema mijar bidestxistina pere be, mêrên bi kîlo û jinên bê kîlo biserdikevin

Li gor lêkolîneke ku li Almanya û Amerîkayê di nava 20 hezar kesî de hatiye kirin jinên zeîf ji jinên qelew zêdetir kar dikin û pere bidestdixin; di nava mêran de jî yên qelew ji yên qelstir zêde dewlemend in.

Lêkolîna ku li Almanya û Amerîka hatiye kirin jin û mêran li gor kîloyên wan di nava du grûpan de bicîh kiriye. Encamên grûpa jinên ku welew in, derxistiye holê ku ev jin li gor yên din zêde kar dikin û pere distînin: Salê 15 hezar û 600 Dolar. Jinên qels jî salê 13 hezar û 850 Dolar bidestdixin.

Encamê grûpa mêran jî berevajî derket. Mêrên qels salê 8 hezar û 450 Dolar bidestdixin û mêrên ku kîloyên wan di derdora 100'de ye dewlemend in û zêde pere qezenc dikin.

## Xaçepirs



**Çeperast:** 1- Agir pê xistin, qelandin. 2- Navekî zilaman – Nexweşîya kêmxwînîyê, xwîna kêm. 3- Heywanek jehrîn – Şerîta ku ji mûyê bizinan çêdibe, bi taybet gundî bi kar tînin. 4- Deng, awaz – Hejmar – Germ, dîn, çavsor (berepaş). 5- Kurkirin, qusandin – Vexwarinek (berepaş) – Pê por tê rastkirin. 6- Bombeya herî xeter – Hewa, gazek – Fêkîyek (berepaş). 7- Dirêjîya binê erdê – Belavbûna deng, gurbûna deng. 8- Hejmarek – Peyman, qesem, soz – Meha 9 an. 9- Fêkîyek – Mirov, meriv, beşer. 10- Rojek (berepaş) – Êşkence, tade – Pevçûn, lihevxistin.

**Serejêr:** 1- Xapandin, xistin, sabûn xistin bin ling. 2- Betal, zexel, zugurd (berepaş) – Unîversîte. 3- Dengê trimbêlan, dengê ambûlansê – Zerzewatek, dikakek xwarinê. 4- Di paqijkirina qirikê de tê gotin – Maç, maçîkirin. 5- Êş, jan, agir (berepaş9 – Kesê ji Rûsyayê. 6- Hema, nebe (berepaş) – Serê xênî, jor. 7- Bajarekî Kurdistanê. 8- Her hebe, xwedê zêde bike – Redkirin, nexwestin. 9- Mexlûqat, beşer, ruhber – Dixan, dûman – Notayek (berepaş). 10- Na, no, nabe – Parçe, parî, gep. 11- Mehane, mûçe, qezenca mehê – Fenek, jîr, çav vekirî, zekî. 12- Notayek – Balafirên bê insan, balafirên îstîxbaratê.

### Bersivên hejmara 65

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | z | e | b | û | r | ■ | b | a | ş | û | r | î |
| 2 | e | l | a | m | ■ | s | e | l | e | f | ■ | n |
| 3 | b | a | w | e | s | î | r | ■ | l | e | k | ■ |
| 4 | e | m | e | h | i | m | ■ | b | a | ■ | r | a |
| 5 | ş | ■ | r | ■ | r | i | j | a | n | d | i | n |
| 6 | ■ | e | m | b | a | r | ■ | a | d | e | t | î |
| 7 | e | r | ê | ■ | w | ■ | o | s | i | f | ■ | ş |
| 8 | ş | ê | n | î | ■ | î | n | ■ | n | î | s | k |
| 9 | e | n | d | a | m | ■ | a | m | ■ | l | a | ■ |
| 10 | r | a | î | ■ | e | r | ş | ■ | b | e | r | x |